Bidestveanîna mafên neteweyî yên gelê Kurd di çarçoveya Îranekî Demokratîk û Federalî de

Hejmar: 15
Januarya 2005
Biha: 150 Tûmen

# agirî

Rojnameyeke mehane ya siyasî û çandî

Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne

## Serkevtina hilbijartinan li Îraqê

Li Îraqê di encama hilbijartinên roja 30.01.2005'an de, gelên Îraqê bersîveke bihêz bi terorîstan da û demokrasî û azadî wek hêviya xwe hilbijartin.

# Armancên Komara Kurdistanê hergav zindî ne

Di 59'mîn salvegera avabûna Komara Kurdistanê de, rê û resmeke hêja û berfireh di binkeya Deftera Siyasî ya PDK Îranê hate li darxistin. Di vê rê û resmê de peyama Deftera Siyasî ji aliyê birêz Elî Mêherperwer, endamê Dftera Siyasî ve hate pêşkêş kirin. Deqa vê peyamê di rûpela 2-3 ya vê hejmara Agirî de ketiye ber çavên we xwandevanên hêja.







## Peyama pîrozbahiya birêz Sekreterê Giştî yê PDK Îranê ji birêz Mehmûd Ebas, Serokê Hikûmeta Filistînê re

**Rûpela 3**





## Kurmanciya rast li her deran rast e!

**Rûpela 18**

*Têmûrê Xelîl*

## Gotûbêjên Etomî yên Îran û Ewropayê

**Rûpela 8**



**Birêz Elî Mêhrperwer:**

# "Partiya Demokrat wekî avakerê Komara Kurdistanê nehêlane ew çiraya hêviyê ku di Komara Kurdistanê de bi destê Pêşewayê hertim zindî hate hilkirin, bitemire"

**Xûşk û birayên hêja!**

**Beşdarên rê û resma 2'yê Rêbendanê!**

Bi hewce dizanim ku bi hinceta 2'yê Rêbendanê, salvegera avabûna Komara Kurdistanê, ji aliyê Deftera Siyasî ve pîrozbahiyê ji gelê Kurd, PDK Îranê, ji malbatên birêz yên şehîdan û girtiyên siyasî, ji Kadro û Pêşmergeyan û têkoşerên xebata



rizgarîxwaz ya gelê Kurd û ji we beşdarên birêz yên vê rê û resmê bikim.

Derheq 2'yê Rêbendanê û sedema pêkhatina wê û rewşa xasmanî û bidestketên wê û sebebên ji nav birin û canemerg bûna wê, gelek bas hatiye kirin û zaf babet hatine nivîsîn û lêkolîn li ser hatiye çêkirin. Lewra eger em ji dîtingeheke dinê ve mêzeyî wê bûyera dîrokî û desketên dom dirêj yên wê bikin, renge bê sûd nebe.

Her wekî ji hemûyan re rohn e, avabûna Komara Kurdistanê, bi cih hatina xewneke dahan salî ya gelê Kurd bû. Gelê Kurd li Kurdistana Îranê, bi pêkanîna Komara Kurdistanê, herçiqas ji demeke kurt re jî bû, hest bi bûn û kesatiya xwe ya siyasî kir, hest bi xweşî û şahiya xwe rêvebirin, xwe salarî û xwe serweriyê kir. Di wê demê de, ji ceribîna jiyana azad û azadîxwaziyê serbilind hate derê û ew ceribandina dest bi dest bi nifşên pêşerojê re veguhast.

Niha ku roja 2'yê Rêbendanê û cejna wê bîranîna mezin wekî rojeke dîrokî ye û cejneke neteweyî ya gelê Kurd jî tê dîtin, remza wê di çi de ye? Bi hizra min remza vê cîgirtîbûnê di mêjî û dêna neviyên gelê Kurd de, ji paqijî, evîn bi xizmetê, zelalî di gotar û kiryarê, beşdarî kirina gel di wan bidestketên giring û bi nirx de, cîgir bûna tenahî û asayîşê bi ser herêmê, hatine meydana jinan bi awayekî rêxistinî û peyda kirina nasnameya xwe û xebat di wê pêxemê de, mêze kirin ji ciwanan re wekî hêvîbexşên pêşerojê, rêxistina wan di teşkîlata taybet bi xwe de, bilind kirina alaya Kurdistanê wekî sembola serweriya gel, misoger bûna xwendin û nivîsîn bi Kurdî û bilind bûna dengvedana sirûda "Ey Reqîb" û "Xwaya weten ava key", belav bûna kovar, rojname û pirtûkan bi zimanê zikmakî yê Kurdî, pêşdeçûna hunerê û buha û girîngîdan bi hunermendan re û… dehan bidestketên girîng yên din di demeke kin de, ku bi rastî ew roje ji serpêhatiyên gelê Kurd, wate di "Hafiza Tarîxê" (bîra dîrokê) de misoger û cîgirtî kiriye.

Partiya Demokrat wekî avakerê wê Komara giring, bi destpêkeke mezin ve pê avête meydana xebata siyasî. Her çiqas bidestketên wê di warê zeman û demê ve temen kurt û canemerg bû, lê gurr û tên û resaleteke wisan da rêvîngên wê Partiyê ku asteng û kospên ser rêya wan, her çiqas mezin û giran bûne, derbas bikin û ji derfetên baş û jêhatî yên dîroka nêzîk bi 60 sal xebatê de, pitansiyêla xwedîhêz ya xwe nîşan daye û civatên xelkê ji bo orta xebat û têkoşînê kêşane û nehêlane ew çiraya hêviyê ku di Komara Kurdistanê de bi destê Pêşewayê hertim zindî hate hilkirin, bitemire.

Serdema niha ne serdemê wî çaxê Komarê ye. Civaka Kurd pêşketiye û bejîn zêde kirî ye, hesta azadîxwazî û jiyana azad, xweserî û bîra neteweyî tevlî xwe naskirin û pêşketina şiûra siyasî bû ye. Partiya Qazî û avakerê Komara Kurdistanê jî li gor demê xwe pêş xistiye û pêwîst e ji wê pitir xwe tevî pêvajoya serdem rê bixe, heta bikaribe bi hêjayî û başî bersîvderê rewşa taybet ya dewrana xwe be.

Waneyên 2'yê Rêbendanê û serdema Komarê, derbasbûyiyeke paqij, fidakarî û xebata domdirêj, cihwarê qahîm û bihêz ya civakî, pirestîj û hitbara hundir û derveyî, dirûşm û rêbaza durist û jêhat tevî rastiyan, berxwedanî û koletî, hebûna endamên xebatkar û fidakar û dehan xasmaniyên din sermayeyê bêdawî yên partiyê ne ku divêt bi lêzanîn, şarezayî û pisporiyê di pêkhateke qahîm û bihêz û aqilê bikom û giştî de di pêxema bi cîanîna armancên bilind yên Komarê û Serok Komarê wê yê şehîd de wêc û sûd bihê wergirtin.

**Beşdarên birêz!**

59 sal bi ser avabûna Komara Kurdistanê de dibihure, lê peyamên Komarê hêz û qawetê didin me. Ji wê demê were hetanî niha guhertinên zaf derketine rojevê. Niha serdemê cîhanîbûnê ye. Çerxa pêşketina balkêş ya pêwendiyan e. Tora înternêtê bandoreke mezin yê kirye ser cîhan û ew bi hev re girêdane. Qonaxa dawî ji Serdema

rizgariya gelan e. Kêm ji wan gelan mane ku hêj bi destê xwe qedera xwe daiyarî nekiribin. Mixabin yek ji wan gelê Kurd yê çar parçe kirî ye. Em di rewş û zirûfeke wiha de rêzê ji bîranîna 2'yê Rêbendanê digirin ku cîhan herwiha ber bi pêşketin û guhertinan ve diçe. Herêma Rojhilata Navîn di bin bandora yek cemserî û maytêkirina rasterast ya mezintirîn deshilata leşkerî û aborî ya cîhanê wate Amerîka û hevalbendên wê bi guhertin û nivîsîna nasnameyeke nû re rû bi rû bûye. Li Efxanistanê, cih pêyê Taliban û El Qaîdeya hevalbenda wê hate lêj kirin û deshilat ji wan hate standin û xelkê di ceribandina demokrasiyê de û ji rêya sindoqên dengdanê ve serokê xwe hilbijartin. Herçiqas li gor welatên pêşverû kareke hêsan bû, lê li gor Efxanistana paşverû, gaveke mezin û balkêş bû.

Çend rojan berî niha li kele kela rikeberêya bixwîn û di Filistînê de jî **Mehmûd Ebas** ciyê rêberê kevnar û karîzmayê wan **Yasir Erefat** ji rêya hilbijartinê re tejî kir, ku em hêvîdarin destpêka gereke nû be ji bo dawî anîn bi şer û kuştinê di navbera Filistinî û Îsraîliyan û aştî û azadî di herêmê de cîgir bibe û gelê Filistînê jî alaya kesek ya welatê xwe hilbidin.

Li Îraqê û paş hiloşîna rejîma Bees her çiqas, roj nine ku ji aliyê terorîstan ve xwîna xelkê Îraqê û mirovên sivîl û bêguneh nehê rijandin, lê hewl û bizavên micid û tevalî jî ji bo danana Parlemanê û danana Qanûna Bingehîn û pêkanîna deshilateke qanûnî bo rêvebirina welat ji aliyê xelkê ve di holê de ye û bazara hilbijartinê germ e. Heta çiqas gelên Îraqê bi giştî û gelê Kurd bi taybetî, dikaribin di wê ceribandinê de serbikevin, dê di pêşerojê de bihête xuya kirin, lê hilbijartin û çûn bo ser sindoqên dengdanê, xwe bi xwe diyardeyeke demokratîk e. Em hêvîdar in tenahî û asayîş, bi hevre jiyaneke demokratîk di Îraqê de misoger bibe û di vê navberê de jî gelê Kurd di wê para Kurdistanê, bi hêviyên xwe yên mêjîn bigihîje û bi giştî ji kul û xeman dûr bikeve.

Lê li Îranê, guman di wê çendê de nine ku rejîma Komara Îslamî, hewlê dide bandora wê li ser guhertinên deverê bi giştî û Îraqê bi taybetî hebe. Yekem, ji ber vê çendê ku ezmûna Îraqê tevî têkçûnê rû bi rû bike. Duyem, Amrîka û hevalbendên wê neçar bi dana bihayên zaftir bike. Sêyem, dijayetiya xwe tevî Amerîka bo nav welateke din veguhastibe. Ji bilî wan pirsane, giringtirîn pirs, hewlên wê rejîmê ji bo bidestxistina çekên Etomî bi wê hêcetê ku dixwaze bi vî awayî mana rejîma xwe misoger bike û destbilindiya xwe di herêmê de nîşan bide û wekheviyekê di navbera xwe û welatên mezin yên cîhanê de pêk bîne. Lê Amerîka û Yekîtiya Ewropa yê, destpêregihîştina rejîma Îranê bi çekên Etomî bi tirseke mezin bo ser aştiya cîhanî dizanin û hewil didin ku nehêlin Îran wan çekan bi dest bixe. Eger rejîmê ceribîna Yekîtiya Soviyeta berê berçav girtiba, jê re kifş û eyan dibû ku hebûna Zeratxaneyên Etomî nikare mana rejîmê misoger bike û pêşî ji hiloşînê bigire û ew sermaya mezin di wê rêyê de ji dest nedet.

Serkûta azadiyan hêj bi xurtî her didome. Parlemana Ewropayê bi tezeyî hevdeng tevî Amerîkayê, bo careke din bi sedema bin pê kirina mafên mirovan û serkûta azadiyan, Îran mehkûm kiriye û nigeraniya xwe di wê derheqê de eyan kiriye. Rejîm ku wekî hemû demekê çi giringiyekê bi wan nerazîbûnan û raya giştî çi di hundir û çi di asta navneteweyî de nade, herwiha ji bo tepeserkirina azadîxwazan, rewşenbîran û rojnamevanan, her rojê pîlaneke nû digêre. Yek ji wan daxistina malperên înternetî û girtin û zîndanî kirina wêblagnivîs û xwediyên wan malperane ye. Piştî daxistina rojnameyan, vê carê keret gihîştiye malperên înternetî û di vî warî de pirsgirêk û aloziyeke nû çê kiriye.

Meclîsa Heftem jî ji dest rastiyan û tevxwazara pêk hatiye û kêmtirîn radeya piştgiriya gel li pişt e, ji bo berteng kirina her cure tevgereke guhartinxwaz, qanûnê didanê û ji rêya yasayên destçêkirî dijî azadîxwazan disekine.

Pirseke din ku divêt di pêwendî tevî rejîmê de îşare pê were kirin, pirsa hilbijartinên Serok Komariyê di sala nû de ye. çend heyvên din gera Serok Komariya Xatemî dawî pê tê û Serok Komarê nû tê hilbijartin. Paş kifşbûna her çiqas pitir rûçkê rastîn yê Xatemî û têgihîştina bîr û raya giştî ji wê pirsê ku di vê rejîmê de tu cure guhartineke erênî ne mumkin e û Baska Reformxwaz û Baska Tevxwaz dû rûyê yek "sike"(perê hesin)ê ne, gel her wek di hilbijartina Meclîsa Heftemîn û hilbijartina Şêwrên Gund û Bajaran de, çûn bo ser sindoqên dengdanê, baykot kir. Guman di wê de nine ku vê carê jî dê nerazîbûna xwe bi neçûn bo ser sindoqên dengdanê ji bo hilbijartina Serok Komariyê dê nîşan bidin.

Pirsek ku ciyê keyfxweşî û hêviyê ye, eva ye ku hêdî hêdî tevgera neteweyî xincî Kurdistanê di nava gelên din yên Îranê jî de tevijmekê bi xwe ve digire. Daxwaza çareserkirina pirsgirêka gelên Îranê niha pitir ji her demekê tê bas kirin û em dikarin bibêjin dirûşma Federalîzmê yê bûye dirûşma gelên Îranê û gelê Kurd wekî alîgirê xebata neteweyî û azadîxwazî ji her demekê bi serkevtinê re hêvîdar e. Şik û guman di vê de nine ku hevxebatiya gelên Îranê dikare roleke bibandor di guhartinên kûr û bingehîn di Îranê de hebe.

Careke din pîrozbahiyê ji we dikim û ji bo we hêviya pêşerojeke geş dixwazim.

**Peyama pîrozbahiya birêz Sekreterê Giştî yê PDK Îranê ji birêz Mehmûd Ebas, Serokê Hikûmeta Filistînê re**

Birêz cenabê Mehmûd Ebas
Serokê Hikûmeta Filstînê, tevî silaveke germ.
Bi boneya hilbijartina te yê rêzdar ji Serokê Hikûmetiya Filistînê re li ser navê Deftera Siyasî ya PDK Îranê ve bi germî pîrozbahiyê ji te dikim. Bi vê hêviyê ku gelê Filistînê di bin rêberiya te yê rêzdar de bi mafê berheq yê xwe ku avakirina hikûmeteke serbixwe ye, bigihîje û jiyaneke xweş û tenahî û aramiyeke berdewam bi xwe ve bibîne.
Di gel rêza dubare
Deftera Siyasî ya PDK Îranê
Mistefa Hicrî
12.01.2005

# Mayînên nivistî yên bin axê li Kurdistanê

**Azad Kurdî**

Kurdistana Îranê ji çar Parêzgehên Azerbaycana Rojava, Kurdistan, Kirmaşan û Îlamê pêk tê. Teqîna mayînên nivistî û bi dest çandî li rex û derdora piraniya gund û bajarên li her çar parêzgehên Kurdistana Îranê, mijareke giring û balkêş e û divêt tekez di ser de bihê kirin, ji ber ku di her salekê de sedan xortên gelê bindest û belengaz yê Kurd goriyê wan bûyeran dibin. Mijareke giring ku medya û dezgehên ragihandin û çapemeniyê yên hikûmeta Îslamî a Îranê qet bas nakin!

Di encama teqîna her mayînekê de aliyê kêm kesek yan çend kes dimirin yan jî siqet dibin. Di vê gotarê de em dê bi kurtî balê bikişînine ser hin aliyên pêwendîdar yên vê mijarê.



Kurdistana Îranê yê ketiye Rojavayê Îranê. Piraniya bajarên Kurdistanê di gel welatê Îraq û Turkiyê hevtixûb e. Di berahiyê de em bizanin ku ev mayînane çawa çê bûne û hatine çandin?

Gelek ji van mayînane di encama şerê 8 salî yê di navbera Îran û Îraqê de çêbûne. Parek ji van mayînan jî di şerê çekdarî yê bi şan û şerefe tevgera azadîxwaz ya gelê Kurd li Kurdistana Îranê bi pêşengiya PDK Îranê li gund û bajarên Kurdistanê hatine çandin. Wan bi çandina mayînan dixwastin ku rêya xebat û çalakiyan ji pêşmergeyên azadîxwaz dijwar bikin. Gelek ji şervanên azadiyê û xortên qehremane Kurd bi sedema teqîna mayînan di çepera şoreşê de hatine şehîd kirin. Lê çima ev mayîn nehatine hilgirtin? Çima tu gavek di vî warî de nehatiye avêtin? Bersîva wan pirsane û gelek yên din, divêt karbidestên hikûmeta Îslamî ya Îranê bidin ku qet jî ji wan re girîng nebûye!

Li gor rapora Wezareta Hundir ya Hikûmeta Îslamî ya Îranê di bihara sala 2004'an de, 16 milyon mayînên neteqyayî li Rojavayê Îranê (bajarên Kurdistana Îranê) hene. Fikra vê çendê bikin heke ev 16 milyon mayîn biteqin, jiyana 16 milyon mirovan çawa bi rihetî dikeve xeterê.

Rapora han herwiha dide xuya kirin ku bi giştî 2 milyon û 800 hezar hektar ji axa bajarên tixûb ên Rojavayê Îranê -yanî piraniya bajarên Kurdistanê- mayîn hatine çandin. Bi vê hesabê Îran paş Misrê duyemîn welatê cîhanê ye ku di axa vê de mayînên neteqyayî zaf hene.

Gelê me li bajarên Şino, Pîranşar, Dîwandere, Pave, Nexede, Serdeşt, Urmiye, Bane, Merîwan û hemû bajarên din yên Kurdistanê tevî xetera teqîna mayînan re rû bi rû ne. Di vê navberê de bajarên Şino, Pîranşar û Serdeştê zêdetirîn hejmara gorî û qurbaniyên teqîna mayînan hene. Li gor gotina Rojnamevanê Kurd, Xusro Kurdpûr ji Bokanê, bi awayekî giştî di her rojekê de li seranserê Rojavayê Îranê, nêzîk 22 kes bi sedema teqîna mayînan birîndar dibin û hin ji wan jî jiyana xwe ji dest didin.

Teqîna mayînan ji bo rûniştvanên gund û bajarên Kurdistanê yê bûye tişteke edetî. Vê pirsê jiyana wan bi gelek pirsgirêkan re rû bi rû kiriye. Piraniya goriyên van teqînane zarok in. Kesên temendirêj jî bi sedema kirîn û firotina hewcehiyên jiyanê ku diçine Kurdistana Îraqê û Turkiyê, têne kuştin, yan jî bi xurtî birîndar dibin. Heke mirov di nav bajarên tixûb yên Kurdistana Îranê digere, pir kesên bê dest û pê û herwiha yên ku endameke din ji laş û cendekê xwe ji dest dane, bi hêsanî dibîne.

Kurdistana Îranê paşverûtirîn herêm di Îranê de ye. Gelê Kurd di hemû warên jiyanê bêpar hatiye kirin. Ev paremayîna di hemû warên jiyana siyasî, civakî, çandî, aborî û hwd… de xuya û berçav e. Ji ber vê çendê civatên gelên me neçar in ku di herêmên tixûb yê Îraq û Turkiyê de dan û standin û alwêrê bikin, heta ku bikarin debara jiyana xwe bikin. Roj nine ku nûçeyê teqîna mayînekê û kuştin û birîndar bûna wan mirovên zehmetkêş û bi wijdan ku di pêxema jiyana normal û rihetî û bexteweriya malbatên xwe de xebatê dikin, nehê guhdarî kirin. Yan jî ev kesane bi destê hêzên hov û cinayetkar yên hikûmeta Îslamî ya Îranê nekevine ber êrîşê û jiyana xwe ji dest nedin. Rayedarên Rejîmê dibêjin ku ev kesane Qaçaxçî ne! Bi rastî li nav kirina van kesane wekî Qaçaxçî dûr ji sinc û buha û nirxên mirovahiyê ye. Çaxekê ku em li ser Qaçaxê dipeyivin, qaçax bi awayekî zor berfireh ji wan alav û tiştan re tê gotin ku ji rêya dizî û neqanûnî ve bo

welatekê tînin. Bo nimûne di Giravên Başûr yên Îranê, cihên gelek zor bi awayekî ne qanûnî çê kirine û li wir bi berfirehî tiştan bo Îranê tînin û kes jî pêşgîriyê ji wan nake, çimkî wan pêwendî bi rayedarên bilind yên rejîmê re hene û ji teqîna mayînan û êrîşa hêzên leşkerî yên rejîmê û… tu basek jî nine! Ji vana û gelek yên din re qaçaxçî dibêjin, ne takê zehmetkêş yê Kurd re. Lê li Kurdistanê civatên xelkê ku çi dahatek ninin û îmkana kar û debara jiyanê ninin, bi vî awayê hov û nemirovane di gel wan de riftar tê kirin û dikevine ber zext û êrîşên giran û dijwar.

Paqijkirin û ji holê rakirina mayînan li Kurdistanê gaveke micid, bi kiryar û herwiha dezgeh û alavên pêşketî û nûjen dixwaze. Di rastî de ev pirse zaf girîng û balkêş e, mijarek ku deshilatdarên Îranê hergav xwe lê bêxeber dikin, buha û giringiyê pê nadin û heta basê jî lê nakin.

Xwe parastina hêz û dezgehên Komara Îslamî bona paqij kirina mayînan pirseke xwezayî ye, ji ber ku rayedarên Komara Îslamî ya Îranê heta niha tu xizmetek ji gelê Kurd re nekirine û nakin jî. Li hember nerazîbûn, gazî û hewara civatên gelê Kurd derheq vê pirsê bêbersîv û bêdeng in! çimkî ew di fikr û ramanên xwe de ji bilî kuştin, qirkirin, koletî, birçîtî û hwd… çi din ji gelê me re rewa, heq û kêrhat nizanin. Guneha mezin ya gelê me jî Kurd bûn û çeleng bûna tevgera azadîxwaz ya neteweyî ye. Bizava rizgarîxwaz a gelê Kurd dê heta serkevtinê û ji nav birina zulm û zorê û nîrê zordar û serdestan mikum bibe, heta ku çi din gelê me nebe goriyê teqîna mayînan û ….

# Demokrasî, biha û piratîka wê

**Kurmanc Hakkî, hejar@yahoo.com**

**Beşa 11**

**Wîsta gel li demokrasiyên ser bingeha nûnerayetî**

Hizra teoriya wîsta gel û birêveberiya berpisane li ser vê bingehê hatiye damezrandin ku: biryarên siyasî girêdayî bi hilbijarde û prêfirênsên şarovendan di nav altirnatîvên siyasî de ye. Me di beşên borî de giriftên hilbijartin di navbera altirnatîvên civakî şirove kir. Di welatên demokratîk ji bilî dengdanên mîna hilbijartinên parlemanî, refrandom û dengdanên din yên elaqedar bi hilbijartina nûneran bo navendên biryardanê, raya giştî li pêwendî di gel pirsên cur be cur di demokrasiya kollektîv de bi awayekî rasterast nayê berçav kirin. ji ber vê jî ev pirse ku erê gelo çawa li demokrasiyên li ser bingeha nûnerayetî wîsta gel tê şopandin?

**Berhevkirina pirsên hilbijartinê**

Li demokrasiya ser bingeha nûnerayetiyê, şarovend bi awayekî rasterast helwêstê li hemberî take pirsan nagirin. Em vê meselê dikaribin bi awayekê bibînin ku di hilbijartina partiyên beşdar li hilbijartinê ku li ser pirsên cur be cur helwêst û dîtina xwe radigehînin, dengder wan berendamên ku dîtinên wana bersîva wîsta şarovendan dide, hildibijêrin. Li gor dîtinên zanayên ser wîsta gel û hilbijartina nûnerayetiyan ev rewşa han giriftan diafirîne. Di hilbijartina wan cure pirsan de piraniya dengan ji bo pirsgirêkan bi awayekî takane nehatiye wergirtin. Belkî dengdan bi giştî bûye û dengderan tevahiya pirsan qebûl kiriye. Ev girifte bi paradoksa *Ostrogoski* tê nas kirin.

Paradoksa *Ostrogoski em* dikaribin bi vî awayî şirove bikin: Ji bo sanahî kirina basa me em vilo dabinên ku her pirsekê tenê du (2) altirnatîv hene: Erê (E) û Ne (N). Em sê (3) pirsan berçav bigirin. A, B, C û du partî jî hene ku bi awayên cuda ser van pirsgirêkan xwedî helwêst in. $P_1$ (Partiya yekem) û $P_2$ (Partiya duyem). Em wiha bibînin ku helwêsta partiyan û hilbijardeya dengderan li ser van sê pirsan bi vî awayî ye:

| **Pirsa rojevê** | | **Partî** **$P_1$** | | **$P_2$** | |
|---|---|---|---|---|---|
| **A** | | **E** | | **N** | |
| **B** | | **E** | | **N** | |
| **C** | | **E** | | **N** | |
| **Dengder** | | | | | |
| **Pirsa Rojevê** | **1** | **2** | **3** | **4** | 5 |
| **A** | **E** | **N** | **N** | **E** | E |
| **B** | **N** | **E** | **N** | **E** | E |
| **C** | **N** | **N** | **E** | **E** | E |

***Cedwela 1. Paradoksa Ostrogoski***

Em wilo dabinên ku her dengderek deng bi vê partiyê dide ku dîtina wan bi hev nizîk e. Bi vî awayî dengderên 1, 2, 3 deng didin $P_2$, ji ber ku bi kêmî 2/3 ya dîtinên $P_2$ mîna dîtinên dengderan e. Bi vî awayî $P_2$, di hilbijartinê de ser dikeve û polîtîka (N, N, N) hildibijêre.

Cihê baldanê ye ku polîtîka $P_2$ nûneriya kêmaniyê di nav pirsên rojevê da dike. Bi awayekî din eger bo her pirsekê dengdan bê saz kirin dê dengê Erê (E) bê hilbijartin. Paradoksa *Ostrogoski* nîşan dide ku çawa di demokrasiya li ser bingeha hilbijartina nûneran de şiroveya pirsan pêşiya cî bi cî bûna wîsta piraniya dengderan bigire. Her wekî tê xuya kirin li demokrasiya ser bingeha hilbijartina nûneran pirsgirêkên nêzîk bi hev tên hevdan.

**Wîsta gel û rikeberiya hilbijartinê**

Di hilbijartina berendam û partiyan de dengder di navbera altirnatîvan da rehendên dijî hev yên beşdarên rojeva siyasî ya hilbijartinê dikin. Dijheviya

van mirov dikaribe bi rikeberiya du dukanên ku kel û pelên rojane yên mirov difiroşin, bişubhîne, ku bixwazin muşteriyên zêdetir ji bo aliyê xwe bikişînin. Eger em wilo dabinên ku rûniştivanên taxê (gerek)ê bi awayek wekhev serdana van dukanana dikin, vê demê her yek ji vana divêt karek zortir bike ji bo ragirtina muşteriyan û bihewilîne xelkeke zêdetir bo aliyê xwe bikişîne. Di vê mînakê de em wilo dabinên ku her yek ji van dukandarane dixwazin muşteriyên hev ji xwe re bikişînin û di vê rewşê de her yek ji muşteriyan xwediyê buhayek taybetî ne ji bo dukandaran.

Mînaka serê em dikaribin li rikeberiya du berendamên hilbijartinê jî bi kar bînin. Bi vî awayî em dikaribin bêjin dengder di navbera rikeberî û cudahiya îdeolojiya partiyan yekê hildibijêrin. Merem ji îdeolojiyê di basa me de dîtineke giştî ye ji bo baştirkirina rewşa civakî. Aîdolojî helwêst derbirîneke fermî û normatîv e ku têde tê rohn kirin li gor dîtina Partî û berendamên hilbijartinê kar û barên civakî û siyasî divêt çawa bibin. Aîdolojî dibe sebeba hevgirtina partî û berendamên lîsteya partiyan da û ji bo xelkê (şarovendan) asankarî tê kirin ku li ser hin pirsgirêkan helwêsta hizb û berendaman pêşdîtin bikin.

Eger hemû dengderan dîtinên wekhev li ser pirsgirêkan heban, vê demê di hilbijartina kolektîv de hem partiyan hem jî berendam û dengder dê biban xwediyê dîtineke berfireh û hevbeş.

Li dema hilbijartina navbera îdeolojiyan, berçavkirina dijhevî û xalên ne li hevkirinê yên di navbera wana de roleke mezin dibîne. Dengder bi berhevdana cudahiya aydiolojiyan dikaribin dijheviya wana bibînin. Dijhevî yan rikeberiya îdelojiyan bi gor civakan tê guherîn. Dijheviya mezin di îdeolojiyan li navbera partiyên rastrew û çep de li ser çewaniya sîstema aborî û dabeşkirina dahata giştî tê dîtin, yan jî navbera hêzên lîberal û konservatîv li ser rewşa civakê û serbestiya civakî.

Em wilo dabinên ku du partiyên cuda hene ku dixwazibin piraniya dengan ji bo parlemanê bi dest bînin. Vê demê 1) bi kêmanî du îdeolojî hene ku li dijatiya wana dengder dixwazibin sûdû behrê wergirin. Û li gor wê biryara hilbijardeya xwe li ser partiyan an berendaman bidin. 2) dengder bi tevahî li ser cudahiya îdelojîk yên partî û berendaman hatine agahdar kirin. 3) Dengder wê partî yan berendamî hildibijêrin yê ku bi îdeolojiya wan nêzîk be. Ferza me ewa ye ku dengder rasionalîst (mentiqîn)e û tenê li gor bernameya partî yan berendaman deng biryara xwe didin.

Eger rewşa hilbijartinê li gor ew birgeya me li serê bas kirî be, ewa sirûştî ye ku partiyên beşdar yên meydana hilbijartinê bixwazibin hêleke navendî bi xwe hilbijêrin. Hêla navendî nûneriya piranî an jî em baştir bêjin nûneriya hilbijardeya piraniya şarovendan dike. Eger em dijheviya îdeolojiyan ji aliyê rast yan çep bidin berhev, em dê bibînin hêla navendî xala hevgirtina wana ye, bi wateyekî din îdeala dengdera ye.

Di babeta serê de hate gotin du (2) partiyên siyasî yan berendam dixwazibin hejmara dengderan bi xwe heta asta herî bilind bigehînin. Dengder jî partî û berendaman li gor rehendên îdeolojî û bernameya ramyarî yên wana berhev didin û di nav wana de preferênsa (helbijardeya) xwe hildibijêrin. Li gor wê dîtinê hizba bi dîtinên navendî, dilxwaza siyasî ya piraniya dengderan ye û em dikaribin bêjin hizra navendî (miyanê rew) di siyasetê de "nûneriya piraniya" xelkê dike. Eger em wilo dabinên ku îdeolojiyên partiyên siyasî hilbijardeya siyasî ya xelkê ye, dikaribin wê dîtinê bi derbirîna teoriya deshilata xelkê bidin naskirin. Merca wê jî xwedî berpirsyarî bûn û cihê bawerî bûna partiyên siyasî ye. Yek ji nîşanên xwedî berpirsyariyê ewa ye ku partî nîşanî dengderan bidin di dema ser hakimiyetê an jî helwêst derbirîne de dîtin û kiryara wana ji hev dûr nebe.

Pirseke din ji dîtinên dengderên navendî ewa ye ku erê gelo tenê cudahiya îdeolojî hegereke bes e ji bo hatin hilbijartinê? Dengder bi giştî siyasetvan û partiyan bi şêwazên cur be cur dinirxînin. Vê demê hilbijardeya (preferênsa) dengderan çend rehendan[1] (boid) bi xwe ve digire. Bi vî awayî nûnerê piraniyê dê bibe partî yan berendamek ku dîtinên wê bi awayekî berfireh bersîva rehendên hilbijardeya dengderan bide. Ew rewşe di piratîkê de gelek zehmet ser digire, lewra di helbijartinên cuda cuda de paresengek ji bo piraniyê bi dest nayê. Bi wê sebebê ye jî ew partî û berendamên ku dengê kêmanî anîne bi guhartinên siyasî û piratîk de dikaribin nûneriya piraniya dengderan bidest bînin.

Ji bilî wana partî û berendamên hilbijartinê ji rêya şûndanîn li ser dengderan, dikaribin altirnatîvên siyasî bibînin. Eger em wê derfetê berçav bigirin, sirûşta siyasetê bi awayekî berfireh tê guherîn. Li gor dîtinên hin siyasetzanan hilbijartina kolektîv tenê berhema navendên siyasî û hizra takekesî nîne, belkî berhema jîrîtî û hişyariya rêberê siyasî ye jî. Merem ji rêberê siyasî ew kes e yan ew kesane ne yên ku dikaribin pirosesa bersîva pirsgirêkan û biryardan ser kêşeyan wêne bikin û dikaribin deng bidin rehendên cur be cur yên îdeolojiyan. Rêberên siyasî di şûna wê ku çavnihêrê wê yekê bin dengder bi xwe pirsan ji partiyan û berendaman li ser meselên cur be cur yên pêwendîdar bi dengdanan heye, bikin, pirs û babetan bi awayekê darêjin ku bersîva pirsyar û kirîtêrên dengderan bidin.

Bidestveanîna piraniya deng yan piraniyê gelek zehmet e, ger bihê û altirnatîv zêdeyî duyan bin. Bi hev girêdayî bûna pirsgirêkan yek ji van hegeran e ku xuyanî kirina piraniyê zehmet dike. Pirsa hilbijartin, peyda kirina preferensa dengderan û nirxên civakî yên demokrasiyê, mesela wekheviya civakî, beşdariya siyasî û hwd, ew pirs in yên ku teorîzanên civakî bi xwe mijûl kirine.

Em di hejmara tê de dê basa demokrasî di rikeberên hilbijartinê de bînin ber bas.

[1] **Dimantion**

# Bangewaza nû ya Refrandomê li Îranê

**Dara Natiq**

Midehek e ku ji aliyê hinek ji Jornalîst û kesatiyên siyasî û naskirî yên hundir û derveyî Îranê pêşniyar û bangewaza Refrandomekî Niştimanî bi merema guhartina Qanûna Bingehîn ya Îranê û avakirina Parlemaneke gelî û demokratîk ketiye rojevê.

Lê ev bangewaza ku li ser tora înternêtê û navxweye Îranê hatiye belav kirin, tevî helwêst û ol, bîr û bawer û cinsî di Îranê de diket. Her wisan dibêje ku hemû ev asteng û pirisgirêkên bûne sedema pêşnekevtina welêt di cîhana îro de.

"Bê şik bangewazekî wiha wek deqeke nerohn û şêlû di bingeh de hilgirê hin rastiyên haşa hilnegir e, lêbelê gelên bêzarbûyî yên Îranê, ji mêjve ye ku ev rastiye bo wan eşkere bûye, wate nivîskarên vê




nêrînên cur be cur, ji aliyê baskên hundir yên rejîmê, hêzên Opozisyonê yên navxwe û derveyî welêt û kesatiyên naskirî yên siyasî û çandî rû bi rû bûye.

Nivîskarên vê bangewazê di pişkek ji vê bangewazê de îşarê bi dijatiya yasaya bingehîn a Komara Îslamî û hin dezgehên navxwe yên rejîmê tevî Carnameya Gerdonî a Mafên Mirovan û azadiyên kesî, civakî, bêdadî û newekheviya navbera rûniştvanên Îranê, cudahiya dîn, bangewazê bi tu lojîkekê bi pêşengê nasîn û ragehandina wan rastiyane nahêne naskirin. Çendîn sal e ku xelkê Îranê û bi taybetî gelên bindest yên wî welatî seh bi bin pê kirina mafên mirovan û ew bêdadî û neheqiya ku derheq bi wan û paremayiya vî welatî ji karwanê pêşkevtinê tê kirin, kirî ye û bo bidestveanîna mafên zevtkirî yên xwe fidakartirîn xortên xwe pêşkêşî bargeha azadiyê kirine. Cuda ji wane jî nivîskarên vê bangewazê heta îşareyeke biçûk jî, bi yek ji pirsgirêkên here bingehîn yên civaka Îranê û rêya derbasbûn ji vê kirîza kûr di bangewaza xwe de destnîşan nekirine, wate çavê xwe ji rastiya pir neteweyî bûna Îranê miqandine û hebûna derekî ya nifûseke zêdetir ji 50% ji xulyaqeta Îranê ku di bin stema here dijwar ya neteweyî de ne, avêtine pişt guhê xwe. Ew divê ji vê rastiyê agehdar bin ku gelên bindest yên Îranê li ser hewcehiya parvekirina deshilata siyasî di Îranê de mikum in û bo derbasbûn û xwe derbas kirin ji vê rewş û zirûfa niha ya Îranê, avakirina sîstemeke Federalî pêşniyar kirine. Ji ber vê çendê ku di vê bangewazê de çi peyvek ji rastiya haşahilnegir a pir neteweyî bûna Îranê û parvekirina deshilatê li ser bingeha sîstemeke Federalî nehatiye kirin, çavnihêriya pêşwazî kirina gelên Îranê bi tewahî û bi taybetî gelê bindest yê Kurd di vê bangewaza nerohn û şêlû de bi çavnihêriyekî lojîkî û eqlanî tê hesibandin".(*)

Ji aliyekî din ve gelê Kurd li gor kakila vê bangewazê dîsan dikeve bin stema neteweyî de û ji mafên here sereke yên siyasî, aborî, civakî, çandî û hwd... yên xwe bêpar dibin û wekî şarovendekî derece du tên hesibandin. Ji mêj sal e ku ev gele di bin stema netewî de dinalîne, ku wisan bû ev gele nikare ji pêşeroj û encama vê Refrandomê nigeran nebe. Lêrede ev pirsyare tê holê, erê gelo nivîskar û pêşengê vê bangewazê yê çawan piştrast bin bi piştevanî kirina gelên Îranê, di çaxekê de ku çi îşareyek bi çareser kirina doza pir neteweyî bûn û parvekirina deshilatê di navbera wan gelane de nehatiye kirin?

Nivîskarên bangewaza fantazîkî a naskirî bi Refrandom, behsa pêkanîna hikûmetekê ku bi piştevaniya piraniya xelkê Îranê û li ser bingeha parastina tewahiya axa

Îranê û qazancên milî û pêkanîna pêwendiyên asayî tevî cîhanê û piştrasbûn bi biha û nirxên çandî û aborî yên Îranê diket, ku bikaribe welêt ji wê qeyranê rizgar biket. Erê gelo merem ji bihayên çandî yên Îranê çiye û hetanî çi qasekê biha û nirxên çandî û dîrokî yên gelên din yên Îranê û bi taybetî gelê Kurd wek yek ji kevintirîn û esîltirîn netewe di Îranê de bi xwe ve digire?

Daxwazkarên vê bangewazê divêt baş bizanin ku nîzama siyasî a Îranê bi dirêjahiya dîrokê, her dem ji aliyê rejîmên totalîtêr û ne demokratî ve birêve çûye û diçe. Sexmeratî vê çendê jî netewe û kêmaniyên etnîkî yên nehakim hertim ji pişikdarî kirin û mafê diyarî kirina qedera neteweyî a xwe bêpar bûne. Bo xwe rizgarkirin ji vê stema dîrokî, gelên ne Fars û kêmaniyên olî di Îranê de, ku zêdetir ji nîviya nifûsa Îranê pêk tînin, dest bi bizav û tekoşînên demokratî di pêxema bidestveanîna mafên berheq yên xwe kirine û çareserkirina vê dozê jî di avakirina sîstemeke demokratîk û Federal de dibînin.

Zêdebarê baskirina wan rastiyên jorîn, hewce ye ku em nêrîneke kurt derheq bi rêveçûna pirosêsa Refrandomê di zirûfa niha û di bin siya rejîma totalîtêr a Melayan di Îranê de bikin.

Tişteke xwezayî ye ku Refrandom yek ji terzên jêhat yên xebata azad û demokratîk e. Lê ev şêweya demokratîk nikare di rewş û zirûfeke ne demokratî de şiklekî bikiryar bi xwe ve bigire. Refrandom curek ji hilbijartinê ye ku divê di rewş û kavdaneke demokratîk de birêve biçe. Niha ev pirsyare bo me derdikeve holê ku: Erê gelo îmkana rêveçûna Refrandomekê bi merema guhartina yasaya bingehîn ya Îranê li ser bingeha Carnameya Gerdonî a Mafên Mirovan û avakirina Parlemeneke gelî û demokratîk, di bin siya Komara Îslamî de heye?

Pêşengên vê pirosê divê baş bizanin ku hetanî zirûfeke azad û demokratîk di welêt de cihgir nebe, heta ku Wilayeta Feqîh a rejîmê, Sipah, Besîc û tewahiya dezgehên tepeserkar yên rejîmê ji nav neçin û girtiyên siyasî nehêne azad kirin, tepeseriya rojname û rojnamevanan bi dawî nehêt, mafê çalakiyaên siyasî û azad ji partên siyasî re nehête dan, Refrandomekî azad û demokratîk di Îranê de bi bê ji nav çûna van arîşe û pirsgirêkane nikare birêve biçe. Divêt em vê çendê jî bizanin ku daxwaz kirin ji Komara Îslamî bo rêvebirina Refrandomekê bi merema guhartina Qanûna Bingehîn tê wateya hiloşandina Komara Îslamî. Erê gelo tu bêjî rejîma totalîtêr ya Komara Îslamî bo ji navbirina xwe vê daxwazê bipijirîne?

Gelên welatê me her bi baykotkirina helbijartinên Şêwrên Bajar û Gundan di Reşemeya sala 1381'an de û hilbijartinên gera heftemîn a nûnerên Parlemanê di Reşemeya sala 1382'an de, bêzarbûna xwe ji vê hikûmetê dane eyan kirin û ji raya giştî re dane xuya kirin ku ew hikûmeta olî û serberedayî ya Komara Îslamî naxwazin, belkî daxwaza hikûmeteke demokratîk û sikolar li ser bingeha sîstemeke Federal in ku têde deshilat di navbera hemû netewe û girûpên etnîkî yên cuda cuda yên welêt de hatibe parve kirin. Lewra divê nivîskarên vê bangewazê baş bizanin ku tevlîbûn bi her bangewaz yan pilatformekê girêdayî ye bi hilweşandina tevahiya pêkhata Komara Îslamî û avakirina hikûmeteke demokratîk û Federal ku têde deshilat di navbera hemû gelên Îranê de bihête parve kirin.

**Perawêz:**
(*) Rojnameya Kurdistan, (Organa Komiyeya Navendî ya PDK Îranê) hejmar 403

## Gotûbêjên Etomî yên Îran û Ewropayê



Di çend rojên borî de gera din ji gotûbêjên 3 welatên Ewropa (Firanse, Birîtaniya û Almanya)yê bi Komara Îslamî ya Îranê re li ser bernameya dewlemendkirina Uraniyûmê pêk hat. Ev sê welatên Ewropayê xebatê dikin ku aloziya li ser bernameya Etomî ya Îranê bi rêyên dîplomatîk were çareser kirin. Di civîna vê dawiyê li Viyenê van 3 welatan daxwaza destberdan Komara Îslamî ji bernameya dewlemendkirina Uraniyûmê kirin.
Civîna vê carê ya sê welatên Ewropa û Îranê careke din bê encam ma. Nûnerên Îranê di civîna han de dijî daxwaza sê welatên Ewropayê sekinîn. Diyare ku civîna din dê di meha Febriyê bihê lidarxistin.
Wezîrên Karê Derve yê Almanya û Îngilistanê beriya civînê li Waşîngtonê bi rayedarên payebilind yên Amerikayê re hevdîtin pêk anîn. Wan di hevdîtinên xwe yên bi Kandolîza Rays, Wezîrê Karê Derve yê Amerîkayê re mijara bernameya Etomî ya Îrnê anîn rojevê.
Wan anîn ziman ku ew sê welatên Ewropî dixwazin ku pirsgirêka Îranê bi rêyên diplomasiyê çareser bibe. Yoşka Fîşêr Wezîrê Karê Derve yê Almanyayê got, Ewropa dixwaze di vê mijarê bi Amerîkayê re hevkariyê bike.

# Rêxistina Netewên Yekbûyê û çareseriya pirsgirêkên cîhanî

Şehab Xalidî Sinci_57@yahoo.com



Di kelekela şerê cîhanî yê duyem de, piştî wê çendê ku kêrnehatiya Civaka Neteweyan (Camiêyê Milel), ku di heyamê navbera şerê cîhanî yê yekem û duyem de hatibû avakirin, eyan bû ev xweziya di bîr û raya giştî a cîhanê de pêk hat ku piştî bi dawî hatina şer, Rêxistineke Navneteweyî di cihê Civaka Neteweyan de bête avakirin ku di rastî de bikare pêşiya xweşbûna agirê şeran bigire. Gava yekemîn derkirina daxuyaniyekê di navbera hevalbendan de bû ku di meha Juena sala 1947'an de ji aliyê 14 welatan ve hate îmza kirin. Gava duyemîn derkirina daxuyaniyeke 7 maddeyî bû li ser çêtirbûna rewşa pêşeroja cîhanî. Ev peymannameya ji aliyê Firanklîn Rozwêlt Serkomarê Amerîkayê û Wîniston Çirçîl Serok Wezîrê Îngilistanê di meha Ota sala 1941'an de di nav keştiya şervanên Îngilistanê, bi navê "Pirêns Owêlz" de hate nivîsandin û berhevkirin, ku piştre bi **Peymannameya Atlantîk** hate binav kirin. 7 maddeyên wê peymannameyê evana bûn:

1- Pêşgîrîkirin ji bi karanîna zorê di çareserkirina pirsgirêkan de
2- Kêmkirina xercên teslîhatî (çekan)
3- Azadiya di behran de
4- Neguherîna tixûbên di navbera gelan de bi bêy razîbûna gelên wan welatan
5- Azadiya gelan di diyarîkirina her terze hikûmetekê ji xwe re
6- Azadiya kirîn û firotina amûr û alavên negih (xaw)
7- Piştî têkşikandina Naziyan, aştiyek bête cîgir kirin da ku zirûfeke bêhtir bona kar û pêşveçûna aboriyê pêk bêt

Piştre nûnerên 26 welatan ku dijî Hêzên "Mêhwer" di şer de bûn, di 1'ê Januarya sala 1942'an de Peymannameya Neteweyên Yekbûyî di Waşingtonê de îmza kirin. Di vê peymannameyê de hatibû:

1- Bona serkeftin di şer de divêt ku ev 26 welatane hevkariya hevdu bikin
2- Ji îmza kirina peyman û lihevkirinên aştiyê bi rengê cuda cuda pêşgiriyê bikin

Di Oktobra sala 1943'an de dewletên Çîn, Sovyetistana berê, Îngilistan û Amerîkayê di bajarê Moskoyê de civînek pêk anîn (Konferansa Moskowayê). Di vê civînê de daxuyaniyek li ser hewcehiya pêkhatina rêxistineke navneteweyî di ciyê Civaka Neteweyan de ji aliyê van çar welatan ve hate îmza kirin. Yekemîn gava here giring di vî warî de, di konferansa "Dambartin UKS" li Amrekayê, di sala 1944'an de hate hilgirtin, ku li wir welatên Amerîka, Sovyetistana berê, Îngilistan û Çîn, terhê peyrewa navxwe ya Rêxistina Neteweyên Yekbûyî darêtin. Di meha Februarya sala 1945'an de Konferansa "Yalta" di Yekîtiya Sovyeta berê de pêk hat û tê de mafê "**wito**" ya welatên mezin hate holê û di encamê de Konferansa "Sanferansîsko" bi beşdariya nûnerên 51 welatan di 25'ê Aprîla sala 1945'an de pêk hat û di vê Konferansê de nûneran peymannameya 111 maddeyî ya Neteweyên Yekbûyî di 19 pişkan de berhev kirin.

Piştî behs û gengeşeyeke zaf, cara dawiyê di 25'ê Juena sala 1945'an de Peymannameya Neteweyên Yêkbûyî ji aliyê nûneran ve hate pejirandin û ji 24'ê Octobera wê salê pêve, ew peymanname bo rêveçûnê berhev bû, ew 51 welatên ku di Konferansa Sanferansîskoyê de beşdar bûn bi yekemîn endamên vê rêxistinê têne hesibandin.

Pêpkên bingehîn yên Rêxistina Neteweyên Yêkbûyî evên jêrîn in:

1- Civata Giştî ku binka wê di bajarê Niyuyorkê de ye

2- Konseya Civata Ewlekariyê ku binka wê di bajarê Niyuyorkê de ye

3- Civata Aborî û Civakî ku binka wê di bajarê Niyuyorkê de ye

4- Civata Serperestiyê ku binka wê di bajarê Niyuyorkê de ye

5- Dadgeha Navneteweyî ya Dadmendiyê ku binka wê di bajarê Laheyê de ye

6- "Debîrxane" (sekertariyet) ku binka wê di bajarê Niyuyorkê de ye

Zêdetir ji nîv sedsal bi ser avabûna vê rêxistinê re dibihure. Ev rêxistina niha di sedsala 21'an de ye. Erê gelo bi rastî ev rêxistina niha jî yê her bikare pirsgirêk û arîşeyên di cîhanê de çareser biket? Helwêsta wê li hember terorîzma cîhanî de divêt bi çi awayekê be? Erê gelo qedera vê saziyê dê çi jê bihêt?

Di rastî de rewşa cîhanê piştî şerê cîhanî yê duyem heya niha guherînên zaf bi ser de hatine û bona çareserkirina pirsgirêkên taze, divêt bingehek hebe ku pêkhateke nûjen hebe û bersîvderê arîşe û pirsgirêkên vî serdemî be. Di sala 1946'an de dema ku endamên Konseya Ewlekariyê, karê xwe bo cara yekemîn di Niyuyorkê de dest pê kirin, çavnihêriya welatên ku ser bi vê rêxistinê bûn, li jêr bandora şerê cîhanî yê duyem de bû. Lê ev çavnihêriya niha êdî guherîn bi ser de hatine, niha berpirsyarên Amerîkayî buhagiraniyeke wisa bi rolê Rêxistina Neteweyên Yekbûyî re di çareserkirina aloziyên cîhanî de nadin û wisa difikirin ku ev saziya êdî nikare pirsgirêkan çareser biket. Lê ji aliyekî din ve hebûna vê saziyê giring dinirxînin û hinde basa hilweşandina wê nakin.

Kîm Hulmz, yek ji berpirsyarên naskirî yê Amerîkayî ku di çaxê avakirina Rêxistina Neteweyên Yekbûyî di sala 1946'an de ku bi xwe li wir bû dibêje: Pirsên vê saziyê wê demê li gorî ceribandinên şerê cîhanî yê duyem bûn, lê niha ev pirs nemane û gelek arîşe û pirsgirêkên din di hember vê saziyê de li ser hev bûne kelek. "Niha ev saziya tevî pirsên wek terorîzma cîhanî û pirsa çêkirina çekên tevkuj berengar e. Vê saziyê her ji destpêkê ve xwestiye ku bo cîgirkirina aştiyê di cîhanê de xebatê biket, lê di rastî de ev saziya hinde di vî karî de serkevtî nebûye. Di sala 1948'an de Rojhilata Navîn tûşî qeyraneke mezin bû, lê vê saziyê nekarî aştiyê di herêmê de cîgir biket. Di çaxê şerê sar de jî vê saziyê nekarî aştiyê cîgir biket. Hetanî wê wextê ku Sovyetistana berê û Bilûka Rojhilatê hilweşiya, xebata van du Bilûkan dijî hev her dom hebû. Vê saziyê heta nekarî qeyranên herêmî yên biçûk jî çareser bike û karnameyeke baş çinine. Yek ji sedemên sernekevtina vê saziyê, eva ye ku vê saziyê hêzeke leşkerî çinine. Sedema duyem jî eva ye ku di çaxê şerê sar de, hêzên muqedersaz di vê saziyê de her yek bo aliyekê hatine kêşandin û ne tenê çi yekîtiyeke bi kiryar di navbera wan de pêk nehat, belkî vana biryar dan ku dijî hevdu xebatê bikin. Bilûka Rojhilat û Bilûka Rojava di wextê şerê sar de tenê bawerî bi dîtingehên xwe hebûn û bala xwe nedidane bîr û rayên din. Bi vî awayî bû ku paşê ev dîtingeha hakim bû ku tenê hêzên mezin yên herêmê dikarin pirsgirêkan çareser bikin û Rêxistina Neteweyên Yekbûyî çi ji dest nahêt.

Ji şêst salên derbasbûyî were heya niha zaf pirsgirêk hebûne ku vê saziyê nekariye wan çareser bike. Dest pê bûna ducarkî ya têkiliyên di navbera Amerîka û Çîn – girêdana peymana nehêlana çekan, di navbera Amerîka û Sovyetistana berê di Hilsînkiyê de- peymana aştiya di navbera Ereb û Îsraîlê di Kemp Dêwîd de -peymana aştiya di navbera Misr û Îsraîlê de- destpêkirina got û bêjan di navbera Îngilistan û hêzên Îrlendê û avakirina pêpkên destpêkî yên Parlemana Ewropayê.

Tevahiya van pêşkevtinên aştiyane bi bêy cehd û tekoşîna Rêxistina Neteweyên Yekbûyî çêbûne. Heta di warê şerê Hevalbendan tevî Îraqê jî me dît ku Civata Ewlekariyê nekarî bigihîje çi encamekê.

Yek ji eslên bernameya vê saziyê eva ye ku çi welatekê mafê destêwerdana di nava kar û barên welatên din de çinine. Lê di rastî de vê eslê di radeya cîhanê de kêrhatiya xwe ji dets da ye, çimkî hinek welat hene ku niha jî di serdemê cîhanîbûnê de ne tenê gefa li gelên welatê xwe dikin, belkî gefan ji welatên dinê jî dikin, lewra divêt îmkana destêwerdana di nav kar û barên navxweyî yên wan welatan de hebe ku rêz û hurmetê ji mafên mirovan nagirin, da ku wan welatan neçar bikin ku mafên mirovan berçav bigirin. Helbet mifah wergirtina ji hêza leşkerî, yê qonaxa herî dawiyê ya biryardanê be.

Şarezayên siyasî îro rojê li ser vê baweriyê ne ku divêt di pêkhata vê saziyê de guhartin çêbin, heke ne vê saziyê şiyana çareserkirina pirsgrêkên cîhanî çinnine. Cehd û tekoşîn bona cîgirkirina aştiyê di seranserê cîhanê de wezîfeya li ser milê her miroveke/a xwedan wijdan, mirovhez û azadîxwaz e.

**Jêder:**
Kovara Lawan, hejmar 34
Radyo D.W ya Almaniya

# Bîranînek ji şerê bi nav û deng yê Ceterê*

**Rostem Cehangîrî**

20 salan berî niha (14-16.10.1363 Rojî) li ser biryara Melbenda Agirî ku pêk hatibû ji Komîteyên Urmiye û Araratê û her yek ji wan komîteyan jî pêk hatibûn ji Hêza Şehîd Niho (Urmiye), Hêza Şehîd Sergurd Ebasî (Ararat), Hêza Şehîd Hatem (Selmas) û herwiha desteyeke zerbetê (şervanan) ji Hêza Şehîd Aware li devera Pîranşarê ku bo meşandina kar û xebata Partiyê bo Bakura Kurdistan Îranê hatibûn, biryar hate dayîn ku derbeke malî li dujmin bidin, lewra dest bi gereke siyasî-leşkerî kirin û ber bi bajarê Selmasê bi rê ketin û piştî gerekê di nava xelkê û qise û axavtin tevî wan, biryara lêdana Şirketa Rê û Ban a bajarê Selmasê hate dayîn. Şereke giran û dijwar dest pê kir û bi dehan maşîn û Otombêlên mezin hatine şewitandin û zirareke pir zaf bi dujmin ket.

Roja paştir egîd û şervanên Hêzên Hatem, Niho, Sergurd Ebasî, Şehîd Aware çûne Berdîdiyan li Selmasê û dujmin êrîşeke tund kire ser wan û li şereke şeş û nîv demjimêrî di wî gundî de, dujminê zalim bi dana zêdetir ji 50 kuştiyan paşde kişya. Mixabin di wî gundî de 3 Pêşmerge jî şehîd bûn.

Roja paştir hêzên azadîxwaz yên Pêşmerge çûne gundê Ceterê û dujmin jî wiha difikirî ku Pêşmerge şeqî û mandî ne û dê bikare bi başî derba xwe ji wan biweşîne, lewra vê carê bi hêzekî gelek zaftir û alavên şer yên pêşketîtir wekî Top, Qumpare û Katyûşa û… êrîşa xwe bo ser Pêşmergan dest pê kir. Şereke zaf xurt di navbera dujmin û hêza qehreman ya Pêşmerge li jêr fermana Fermandarên cesûr û çeleng yên Partiyê de wekî Şehîd Birahîm Şêxalî û Şehîd Hesen Bazûke de dest pê kir û li her deqîqeyekê de bi dehan Top û Qumpare li erdî diketin. Şerek bû ku mirov dikare bêje di dîroka bizava rizgarîxwaz a gelê Kurd li Kurdistana Îranê de bê mînak bûye, tu malek nemabû ku Guletopek yan Qompareyek jê neketibe. Qêrîna jin û zarokan û dengê Top û Qumpareyên dujmin û agirê çekên Pêşmergan bi hev re têkel bibû û reng û dengeke din ji gundê Ceterê re dabû ku her Xwedê dizane çawa bû! Di wê demê de hemû malek çepera Pêşmerge bû, her şêrejinek bo xwe Pêşmergeyek bû, nan û av digihîjandine çeperên Pêşmergan, birîndar û termên şehîdan di qada şer de derdixistin û bo cihên aram dibirin, her kûçe û kolanek bi xwe meydana şer û cihê berxwedaniyê bû û….

Erê gelo: Eger em fikrê ji cudahiya di navbera Pêşmerge û hêzên dujmin de bikin, bi başî xuya dibe ku Pêşmerge bi çekên sivik û hêza kêm ya xwe çawa dikarî li hemberî hêzên dujmin ku bi hemû alav û çekên giran yên şerî dihate meydanê, serbikeve? Belê ewa ku muadilatan di meydana şer de diguherîne, bîr û baweriya Pêşmerge ye ku şer bi qazanca xwe bi serkevtin re xilas dike û cesûr û netirsane berengarî dujmin dibe, lewra ye ku dibêjin **Pêşmerge baskê biqawet yê gel e**.

Hêjayî gotinê ye ku di wî şerî de dujmin bi xurtî têk çû û zêdetir ji 410 kes ji hêzên dujmin hatine kuştin û hejmara birîndaran hinde zaf bû ku her du nexweşxaneyên Urmiye û Selmasê bi hevre daxwaza xwînê ji xelkê dikirin. Ew şere ku bi giştî sê rojan dom kir û di encamê de dujmin têk çû û çek û alavên şer yên baş ketin destê Pêşmerge. Ew serkevtine mixabin bi xwîna 13 xortên Kurd, 13 egîd û şervanên Kurddistanê û 13 Pêşmergeyên cangorî yên PDK Îranê bi dawî bû ku heta heta navê wan di dîroka Kurd li Kurdistana Îranê û PDK Îranê de mîna çirayeke ronahîker dê biçirûske û dîroka Kurdistanê jî hergav dê bi mêrxasî, fidakarî, çelengî û cangorîtiya wan re serbilindiyê bike.

Şehîdên nemir û serfiraz yên vî şerê dîrokî evên jêrîn in:

**1. Şehîd Mehmûd Mehmûdzade (serdesteyê Hêza Şehîd Aware ya Pîranşarê li Bakura Kurdistanê)**
**2. Şehîd Ebabekir Ardevan (Hêza Şehîd Aware)**
**3. Şehîd Mihemed Bayezîdî (Hêza Şehîd Aware)**
**4. Şehîd Heyder Ehmedî (Hêza Şehîd Hatem)**
**5. Şehîd Idrîs Mîrî (Hêza Şehîd Hatem)**
**6. Şehîd Kamil Reşo (Emîn Azdir) naskirî bi Şehîd Kamil Kurdistanî (Endamê Partiya Sosyalîs a Kurdistana Turkiyê)**
**7. Şehîd Fîroz Umerpûr (Hêza Şehîd Sergurd Ebasî)**
**8. Şehîd Mizefer Kamran (hêza Şehîd Sergurd ebasî)**
**9. Şehîd Mewlûd Ebdulahî (Hêza Şehîd Sergurd Ebasî)**
**10. Şehîd Serbaz Ebdulahî (Hêza Şehîd Sergurd Ebasî)**
**11. Şehîd Silêman Reşîdî (Hêza Şehîd Sergurd Ebasî)**
**12. Şehîd Tofîq Bawanî (Hêza Şehîd Sergurd Ebasî)**
**13. Şehîd Seîd Mendan naskirî bi Seîd Qince, (Hêza Şhîd Niho)**

(*)Gundê Ceterê dikeve binya çiyayê **Efxen** li devera Somayê. Çiyayê Efxen, herêma Somayê ji devera Enzel û Zindeştê cuda diket. Gundek e bi xwezayeke gelek bedew û bi av û hewayeke zaf xweş. Xelkê wê kasib, Kurdperwer û evîndarên rêbaz û armancên PDK Îranê ne. Niha jî dayik û bav basa çîroka wî şerê mezin ji bo evladên xwe dikin û qala qehremanî û çelengiya Pêşmergên Partiya Demokrat dikin.

Eva jî di rewşekê de ye ku niha jî dujmin ji Gundê Ceterê ditirse û hest bi tirsê jê diket û serpêhatiyeke nexweş ji wî şerî heye. Lê ji bo Pêşmergeyên Partiya Demokrat, civatên gelê Kurdistanê û bi taybetî devera Somayê bîranîna wê rojê ji aliyekê xweş e ku dujmin di wî şerî de bi xurtî têk çû û xortên Kurd ser ketin û ji aliyekî din jî nexweş e ku sêzdeh xortên gelê wan di vî şerî de jiyana xwe di pêxema azadî, serbestî, demokrasî û mafên neteweyî ji dest dan û bi xwîna sor ya xwe selimandin ku tu car li hemberî dujminê gemar, xwînmij û kevnarperwer de bi çok de nahên û teslîmê xwestikên pîs û mirar yên wan nabin.

Yad û bîranîna wan pîroz, ruha wan Şehîdan şad û rêbaza wan heta roja azadî û serbestiyê berdewam be.

## Kurdistaniyan cejna 2'yê Rêbendanê pîroz kirin

Kurdan 59'mîn salroja avabûna Komara demokratîk ya Kurdistanê di hundir û derveyî welat de pîroz kirin. Di vê roja dîrokî de xelkê bi şeref û mafxwaz yê Kurdistana Îranê li piraniya gund û bajaran û di bin atmosfera leşkerî ya dijîgeliyan de hêj bi coştir ji salên berê cejna 2'yê Rêbendanê ji xwe û partiya hîmdarê Komarê pîroz kirin û tevî şehîdên tucar nemir yên gel: **Qazî**, **Qasimlo** û **Şerefkendî** û hemû şehîdên Kurdistanê peyman nû kirin.

Kurdan bi belavkirina şirîniyan û hilkirina agir li serê çiyayên serkêş yên Kurdistanê û belavkirina tiraktên partiyê û wêneyên şehîdên serbilind yên gelê xwe û nivîsîna siloganên şoreşgerî bi dijminan re selimandin ku her çiqas 59 sal bi ser avabûna Komara Kurdistanê re derbas dibe, lê bîr û armancên bilind yên wê Komara demokratîk hêjî di dil û mêjiyê gelê Kurdistanê de mane û ev tevî serkuta hovane ya Komara îslamî hêj pêtir xurt in li ser domandina ev rêbaza ku şehîdên serfiraz yên gel Qaziyê Serok Komar û Qasimlo û Şerefkendî, ev her du pêxemberên demokrasiyê rêzan û serkeşê vê bûn û div ê rêyê de canê xwe yê pak gorî kirin.

Hêjayî gotinê ye ku gelek ciwanên Kurd yên beşdar di cejna 2'yê Rêbendanê de ji aliyê dijîgeliyan ve hatine binçav kirin û hetanî niha tu nûçeyek ji brdana wan nehatiye weşandin.

# Kursa nû ya perwerdehiya Pêşmergan

Di hêza Parêzgarî ya binkeya Deftera Siyasî ya PDK Îranê de komek ji Kadro û Pêşmergeyên Partiyê cih digirtin. Vê hêzê di biryareke nû de, kurseke perwerdehiya siyasî û leşkerî dest pê kir. Ev çalakiya berfireh ya perwerdehiyê di 1383.10.14 ( 30.12.2005)'an de û li sê beşan dê bidome.

Rêveberên vê kursê, armancên xwe bi awayên jêrîn anîn ziman:

1- Bilind kirina asta zanîn û zaniyariya giştî ya Kadro û Pêşmergeyan li gor yek ji erk û wezîfeyên endamê Partiyê ku di peyrewa navxwe ya Partiyê de hatiye.

2- Hewldan ji bo çêkirina bingeh û çanda hevkarî û rêxistina berfireh di bin dirûşma: **Hemû tiştekê hemû bizannin.**

3- Vekirina dergeheke biçûk ji bo tevlîbûn û çûne nav cîhana zanstî û pisporiya her hevalekê di her warekê de û yên din… .

Waneyên siyasî yên xwandinê di vê kursa perwerdehiyê ji 20 waneyan pêk hatiye:

Heft ji wan nû ne, wekî: Dîplomasî, Zanista Siyasî, Nasiyonalîzm, Rewşenbîr û Deshilat, Derûnnasî, Hiqûq û Hesabdarî. Yên din jî ev in: Siyasetên Partiyê, Cuxrafiya Siyasî, Karê Teşkîlatî, Ewlekarî. Rola Dr Qasimlo, Federalîzm, Demokrasî, Civaka Medenî, Îslama Siyasî, Jeopolotîk, Dîroka Kurdan, Dîroka Tevgerên Kurd, Dîroka Siyasî ya Cîhanê. Waneyên leşkerî jî ji 8 waneyan hatiye pêşkêş kirin.

Qirar e di dawiya her 2 kursên siyasî û leşkerî de, 2 wane jî bi navê Rêzimana Kurdî û Rastnivîsa Kurdî ya Latînî pêk bihên. Herwiha beşdarên kursê zandoreke fêrbûna kamputerê jî dê bixwînin.

Hêjayî gotinê ye ku di wê kursa perwerdehiyê de, 25 mamosta dê waneyan pêşkêşî beşdarên kursê bikin. Pêşwaziyeke gerim ji vê kursa perwerdehiyê hatiye kirin.

## Seredana şandeke payebilind a Partiya Welatparêzên Demokrat ya Kurdistana Bakur li Bîroya Têkilîyên Partiyê li bajarê Hewlêrê

Demjimêr 2:30 paşnîvroya roja duşemî 31.10.1383'ê Rojî hemberî 10.1.2005'ê Zayînî, şandek ji Partiya Welatparêzên Demokrat a Kurdistana Bakur ku pêkhatibûn ji rêzdaran Osman Ocelan, Kanî Yelmaz û Botan, seredana Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê li Bîroya Têkiliyên Dereve yên Partiyê li bajarê Hewlêrê kirin û ji aliyê şandek ji PDK Îranê ve ku pêk hatibûn ji hevalên birêz Elî Mêhrperwer, Mihemed Nezîf Qadirî endamên Deftera Siyasî û Kemal Kerîmî û Mihemed Salih Qadirî endamên Komîteya Navendî ve hatin pêşwazî kirin.

Di rûniştineke dostane de şanda PWD merem ji seredana xwe ji bîroya PDK Îranê bas kirin li ser avakirina partiya navhatî û pirogram û karê xwe di pêşerojê de destnîşan kir û tekez li ser xurt kirina têkiliyên xwe tevî hêzên Kurdistanî li ser bingeha destêwernedan di kar û barên hevdu de kirin û dan zanîn ku PDK Îranê partiyeke dîrokî û kevnar a Kurdistanê ye û ji Komara Kurdistanê ve hetanî niha siyasetên wê di xizmeta berjewendiyên neteweya Kurd de bûye û lewra dostî û hevxebatî tevî PDK Îranê bi hewce dizanin û guhartinên serdem û berjewendiyên neteweyan vê yekê dixwaze ku partiyên siyasî yên Kurdistanê bi hevre hevkariyê bikin û pêwendî û dostiya xwe bihêztir bikin. Şanda PDK Îranê careke din li ser pirinsîpên hevkarî û hevxebatiya partiyê di gel hemû aliyên siyasî yên Kurdistanê tekez kir û ev hevdîtin û têkiliyane jî bi hewce û pêwîst zanîn.

# Jin û terzên tund û tûjiyê dijî wan

**Meryem Hacîpûr**

**Beşa 1**

Tund û tûjî dijî Jinan ku îro bi qasekê di hemû welatan de tê xuya kirin, yê bûye pirs û mijareke cîhanî. Azarên Cismî, zayendî, Rewanî-Pisîkolojîkî û ... dijî jinan, hizr û mêjiyê jinan bi yek cih mijûl dike, ew jî çareseriya bingehîn e? Eve ku çawan dê bikaribin dîtin û nerîna mêran derheq bi jinan biguher in û jin jî heya çiqasekê dikarin di vê biyavê de cehd û xebatê bikin?





Her wekî em dizanin malbat wekî êvirgeheke hêmin û aram ji bo endamên xwe tê hesibandin, lê mixabin tund û tûjiya malbatî vê nêrînê dibete bin pirsyarê. tund û tûjiya malbatî terzek ji şidetê ye ku di herêma taybetî de diqewime û di navbera wan kesan de tê xuya kirin ku bi sebeb û hincetên têkilî û pêwendiyên xwînî, qewmî û yasayî bi hev re hatine girêdayîn. Lê di tund û tûjiya malbatî de ewa ku zêdetir xwe derdixe holê, tund û tûjî dijî jinan e ku sedema bingehîn ya wê jî mêr in.

Tund û tûjî dijî jinan bi terz û metodên cur be cur wekî lêdan û, sû îstîfadeya zeyendî ji keçên kêm temen, sunet kirina jinan, zewacên li ser neçariyê, çend jinî, têkiliyên Cinsî yên bi zorî û neçarî û..., li ser jinan tên meşandin.

**Tund û tûjî dijî jinan di Îranê de**

Rejîma kevnarperwer ya Komara Îslamî a Îranê bi mifah wergirtin ji çeka dînî (olî) tund û tûjiyê dijî jinan dimeşîne û bi hêcetên xebat dijî "Mefasid a Exlaqî", xebat dijî Rojava, xebat dijî bê hicabiyê û..., hemû azadiyek ji jinan standiye û di çarçoveya kevneşopan de kirine êxsîrê destên pawanxwaz û deshilatxwaz yên xwe û bi bikaranîn û peyrewî kirin ji hin yasayên, wekî ji hev kirina du cinsan (jin û mêr) di navend û komeleyên xwendekarî de, pêşgîrî ji pişikdariya jinan di pêşbirkêyên werzişî yên mêran de, pêşgîrî ji tekoşîna jinên hunermend û..., liser armancên xwe tekezê dike.

Ji aliyekî din jinên Îranê ku li bin bandora kevneşopên olî û ne dînî yên pêkhatî ji derew û..., tund û tûjiyê bi rewa û dirust dizanin û radestî tund û tûjiyê dibin, xwe ji çûn û di gihandina dengê xwe bi saziyên dadê diparêzin û mêr jî li hember vê kiryarê de, tund û tûjiyê derheq bi jinan bi rewa u mafê xwe dizane û wan cinayetên ku dûr ji armancên mirovahiyê ne, dimeşînin.

Di rastî de tund û tûjî ji dayikbûyê ne agahî, ne zanîn û ne nasîna jinan e ji mafên takekesî û şarovendî yên xwe. Di Îranê de jin di dema veqetiyan (telaq)ê de serperistiya zarokan jê tê standin û wekî jineka telaqdayî di bin bandora sunnetên mirar û kevin de bi nêrîneke xirab û nerênî tê çav lêkirin û di rastî de jin piştî ji hev veqetiyan (telaq)ê û derketin ji tund û tûjiya malbatî têkelî tund û tûjiya civakî dibin. Jinên Îranê bi taybetî jinên Kurd di malbatê de dikevine ber zulm û zura Bab, Bira, Mêr û... di civakê de jî ber zulm û zora rêbaz û sunnetên kevneşop yên dijî jinan û herwiha di herêma karî de jî ber sitema selîqeyên "Mêrsalar" de.

Nabe tund û tûjî dijî jinan tenê di warê cismî de bikeve ber lêkolînan, ji ber ku divêt di warên zayendî, Ruhî-Rewanî, Aborî, siyasî jî bikeve ber lêkolînan.

**Biyavên tund û tûjiyê dijî jinan**

Di Îranê de tund û tûjî dijî jinan wekî alavekê ji bo "tesbît" kirina deshilata mêran tê bikaranîn û bi giştî li du biyavên taybetî û giştî de xwe derdixe (derdikeve).

**Biyava Taybetî**: Pêkhatî ye ji hemû terzên tund û tûjiyê ku di herêma malbatê de diqewimin yan bi wateyeke din her ew tund û tûjiya malbatî ye ku di malbab û malbata hevjinî de rû dide. Tund û tûjiya kesên nêr di malbatên Îranî de li ser zarokên keç wekî esleke pejirandî lê hatiye û di nebûna bab di malbatê de hemû kesên nêr mafê tund û tûjiyê dijî wan hene. Eva jî di rewşekê de ye ku zarokên Kurd xwediyê hemû terze azadiyekê ne. Zarokên keç ji xwendingeh û domandina wê bêpar in. Nemaze di hilbijartina hevjîna xwe de jî dikevine ber şopa tund û tûjiyê, ku eva jî destpêka tund û tûjiyeke din di jiyana hevbeş de ye. Kesên nêr wan re çarçoveyekê diyarî dikin û wan jî neçar bi pejirandin û peyrewî kirin ji wê pirensîpê dikin ku cihê eslî yê wê jî malbat e.

Di malbatê de ji ber wê ku mêr bi bijîv peyda ker (Nan awer)ê malbatê dike, kêrhatî bi deshilat û berpirsiyariya wî tê dayîn û di wan warên ku berpirsatiya wî bikewe ber êrîş û metirsiyê, dest bi tund û tûjiya rewanî û cismî dijî jinê dike û bi lêdan, sexer birin, dijûn, gef, zêrevanî bi ser hat û çûna wan de, azarên zayendî, zext û givaşên malî û..., bandorên nerênî di warên Ruhî-rewanî, cismî û civakî li ser jinan diafirîne (bi cih dihêle).

# Jina şermoke tîne şarekê!
# Mêrê şermoke naîne kabekê!

Selîm Zencîrî

Her qonaxek ji qonaxên geşekirina cendekî û derûnî ya mirovan(vir de merem ciwan in) hilgirê çend nîşane û xesletên xasmanî bi xwe ye ku bêguman terzê rênimayî û perwerdehiyê çi li asta malbatê û çi di asta derdor û civakê de jî tesîra xwe ya erênî û nerênî li ser pêgehandina kesatiya mirovan de heye.

Şermkirin jî diyarde û nesaxiyeke aloz a derûnî-civakî, haletek e ku bi terzeke sirûştî di hundirê hemû kesekê de heye û mirov dikare bibêje neşiyan û rawestana kesekê ye di çêkirina têkilî û pêwendiyan tevî derdora xwe, ji kesekê bo kesek



din diguhere, herwiha ji civakekê jî bi nîsbet civakeke din cudahî heye.

Di Kurdewariya me de civakê cevek afirandiye ku her kes şermê neket bi levçe û herze tête hesibandin û em hîn kirine ku divêt şermê bikin û li gor dîtina civakê jî şermkirin eyankerê pesn û taybetmendiyên bilind û pozetîv yên wî/ê kesî ne. Haletên şermkirinê di civaka me de cur be cur in. Hene ku şermê ji bab û dayîk, birayê mezin, xizm û kes û mamosta û…dikin. Bo mînak ji ciwanekê (çi keç û çi kur) re şerm e ku bas ji ser meseleyekê bike ku dab divê biryarê li ser bide, ji aliyê din jî ew jîngeh û perwerdehiya ku em têde jiyane û dijîn wiha kiriye ku zor caran me xwastiye pirsyarek an daxwaza tiştekê bikin, lê li ber şermê me nekariye mijara xwe bînin ziman.

Di Kurdewariya me de zaf gotin û pendên pêşiyan li ser şermê hene ku hin ji wana baş û hin yên din jî hewce ye em helwêstê li hember de bigirin. Bo mînak ewa ku dibêje: **Jina şermoke tîne şarekê, Mêrê şermoke naîne kabekê**. Wate heke jin şermoke be, xwedî pesn û taybetmendiyên baş e, lê mêrê şermoke ji wan bêpar e û nikare daxwaza mafê xwe bike. Başe çima dema ku mafê jinê hatibe zevt kirin, Şerm e daxwaza mafê xwe bike? Çima rewş û tîtalên kevn yên civakî iznê jê re nadin berevaniyê ji mafên xwe bike? Gelo eva jî newekhevî û zulmek din nine derheq bi jinan? Divê hetanî kengê sitemên wiha û mînakên wê di civakê de bimînin? Eva jî ku divê civak bersîva vê pirsê bide.

Çêbûna şermê di kesatiya mirovan de bi taybetî di nava refên ciwanan de pir sedem hene ku em dê cehdê bikin perde li ser hin ji wan hilbidin.

**1. Sedema zatî:** Rêjeya tûşbûn bi vê haletê yekcar kêm e û bi kêmî di civakê de hildikevin, lewra renge her bi xwe ciwanekî/a şermoke û dûrparêz bît û karîn û şiyana têkilî kirin, axaftina û berengar bûna wî/ê di asteke nizim de bît.

**2.Metoda perwerde kirinê:** Firoyd dibêje: "Zarok Babeke mezin e". çimkî kesatiya zarokan di salên yekem yê jiyanê de pêk dihêt û awayê pêywendî û riftarên malbatî di wê demê de roleke bingehîn di pêkhatina kesatiya zarokan de dilîze, lewra malbat dikare sedema eslî û bingehîn li peyda bûna şermê di zarokan de be. Bi taybetî ew malbatên ku zor sunnetî, tundrê û dîktator in û jiyana zarokên xwe zaf teng û tesk dikin û delîveya raderbirînê ji wan distînin û wan li cem mêvanan û di asta malbatê de rûşikestî dikin, hertim li pêşiya wan de dibine asteng, çavnihêriyên zaf ji wan, sexer birin, sivikatî, reftarên xirab, tembî kirin, sinûr danan bo wan, nigeranî nîşandan derheq pêşeroja wan û …, ku di encam de şerim geşe dike û ew kese hertim hundirê xwe dixwot û mirovekî/a dilşikestî, sar û bêhêvî derdikeve.

**3. Derdora mirov wekî xwendingeh û zanîngeh û bi giştî civak:** Evane dikarin cih û hayderek bin ji bo perwerde kirin û civakî bûna zarokan. Herwiha xurt kirina têkiliyan di navbera wan de. Lê mixabin berevajî vê yekê xwendingeh û civak di zaf haletan de , bûne cihê zêrevanî kirina tund a civakî li ser wan û bi nimûne zanîna hin kesên şermoke û xwedî kêmasiyên civakî bo yên din di hemû waran de bi taybetî di şikest û serneketinan de, herwiha hesibandina wan bi xwendekar û ciwanên baş, bêdeng, guhdar û….ku hemû dibine sebebê hiloşîna

derûnî û bi cih danana şûnwarê xirab û kêm bûna astê jêhatî û şiyana wan di kar û baran de, di encam de mirovekî/a bêmifah, şermoke, tirsinok û paşverû derdikeve û civak jî ji şiyana wan bê mifah û bi zirar dibe.

**Encam û rêçare**

Di encama wan hemû sedemên ku qala wan hate kirin ciwan nikarin têkiliyê tev derdora xwe û civakê peyda bikin û bi sedema kêm bûna pêwendiyan hest bi reşbînî û tenê bûnê dikin, hest dikin ku ji aliyê hemû kesekê ve li perawêzê hatine xistin û ev heste jî rewşê ji bo nexweşiya xemokî(Efsordigî)xweş dike, herwiha zirûfê jî ji bo hilatin ji malê, cigare kêşan, muitad bûn û nemaze xwe kuştinê jî pêk tîne.

Lewra divêt bi giştî sebekarên vê diyardeya xofnak hest bi metirsî û pêşeroja wê bikin û di fikra çareseriya wê, hemû pevre guhertinan li ser xwe de pêk bînin. Ciwan bi xwe dest bi kar bin, îradê bi xwe bidin, xwe agah bikin, bawerî bi xwe hebin, ji şikestan bêhevî nebin, tabuya ew sinûrê xofnak li xwe de bişkênin û netirsane berengarê waqiên jiyanê bibin û bi rûyeke kenî û vekirî pêşwaziyê ji jiyanê bikin û zal bin bi ser arîşeyên jiyanê de. Herwiha bab û dayik û malbat jî bi riftarên baş û jêhat, perwerdehiyeke zanistî, haydan bi karên baş, sexer nebirina wan, mifah wernegirtin ji wan peyvên ku pê dişkên, şikandina sinûran li ser wan, dana delîveya axaftinê bi wan re, mêze kirin bi wan bi çaveke rêz û hurmetê ve û pişikdarî dana wan di çalakiyên werzişî, hunerî, çandî, geryan û seyran û…dikarin berbendê li pêş vê nesaxiya derûnî-civakî de çê bikin û nifşa ciwan jê rizgar bikin. Lewra heta ku dayîk û bab û civak di bîr û fikra pêşeroj û neviyên xwe de bin me dê pêşerojeke geştir û ronahîtir hebît.

**Jêder:**
**1.** Derûnnasiya zarokan- D.Sîrûs Ezîmî
**2.** Rojnameya xebat hejmar 1379

**Di meha borî de li bajarê Hewlêrê Festîvala mezin ya Muzîk û Strana Kurdî hate lidarxistin. Festîval mêvandarê komên hunerî li her çar parçeyên Kurdistanê bû, me xwast ku ji rewşa huner û hunermendên Kurd li Kurdistana Turkiyê haydar bibin û her seba vê çendê me çend hevpeyvînên kurt tevî hunermendên me yên wira wekî Samiye Koçber (derhêner), Burhan Berken (stranbêj) û Mehmûd Qizil (dengbêj) re pêk anîn, li jêr deqa wan hevpeyvînan ketiye ber çavê we xwandevanên hêja.**

## Hunermendê stranbêj Mehmûd Qizil:

# *Ziman û dengbêjî bi hev re girêdayî ne, ger dengbêjî biqete, dê ziman jî biqete*

**Hevpeyvîn: Emîr Şoaîwend**



**Birêz Mehmûd Qizil tu kengê û li kuderê hatî dinê û niha li kîjan bajarê Kurdistanê dimînî?**

Gelek sipas ji bo we. Ez Mehmûd Qizil, xelkê Amedê me. Ez sala 1939'an li bajarê Amedê li diya xwe bûme. Min ava Amedê vexwariye, min nanê Amedê xweriye û niha jî jiyana min her li Amedê ye.

**Mamosta te karê xwe yê dengbêjiyê kengê û di bin bandora kê de dest pê kir?**

Ez 12 salî bûm dema min dest bi dengbêjiyê kir û palnerê min ji bo wî karî babê min bû. Babê min jî dengbêj bû, dengê wî pir xweş bû, lê navê wî gelek eyan nebû. Dema ew dihat malê ji me re kilam digotin û me guhdarî dikir û bi vî awayî bû ku ez elaqedar bûm û min dest bi dengbêjiyê kir.

**Bi giştî rewşa dengbêjan li Kurdistana Turkiyê çawa ye?**

Dema berê rewş gelek nexweş bû, tirs û xofekî zaf hebû. Gelek kesan nedivêran bi Kurdî xeber bidin, di wê zirûfê de ez diçûme Estenbolê ji bo saz kirina CD yên xwe. Wî çaxî malbat, xizm û kesên min dixwastin ku min ji wî karî dilsar bikin, wan digot tu dê bêyî binçav kirin û dê te bikujin, lê min guh nedida û min karê xwe berdewam dikir ji bo ku qerê gelê min ser min bû û min ev yek wezîfe dizanî. Lê niha rewş baş e, tu pirisgirêk êdî li ser rêya dengbêjan ninin û dengbêj niha bi azadî CDiyan çê dikin û karê wan berdewam e.

**Tu rolê dengbêjan di parastin û geşandina zimanê Kurdî de çawa dinirxînî?**

Bi raya min dengbêjan di parastin û dewlemend kirina zimanê Kurdî de rolekî gelek giring lîstine û wan zimanê Kurdî gihandiye dema îro, ji ber ku di dema berê de Televîzyon tu nebûn, Radyo tu nebûn, Rojname tu nebûn. Ez dibêjim ziman û dengbêjî bi hev re girêdayî ne, ger dengbêjî biqete, dê ziman jî biqete.

**Tu wekî dengbêjekî kal çi şîretekê li hunermendên me yên ku taze dest bi karê stranbêjiyê kirine dikî?**

Ez sipasiya xwe ji wan ciwan û hunermendên me yên ku bi mêjiyekî paqij û guhekî vekirî guhdariya dengbêjan dikin, dikim û çavê wan maç dikim û ji gelê Kurd dixwazim ku ji dengbêjên xwe xwedî derkevin. Ez dixwazim carekî din vê çendê dubare bikim ku ji bo parastina zimanê Kurdî, dengbêjî roleke sereke dilîze û ji bo ku dengbêjî nemire û zimanê dayêka me tevî xwe nebe, divêt ku em li her deverekî Kurdistanê xwendingehên dengbêjiyê ava bikin û em dengbêjên kevnar ciwanên xwe li wê derê hînî dengbêjiyê bikin.

***Filîm çêkera Kurd Samiye Koçer:***

# Huner zimanê aştiyê ye, lê ger di nav hunerê de siyaset hebe, huner dimire û dibe alavê destê siyasetê

**Birêz Samiye Koçer ji kerema xwe tu xwe bi xwendevanên me bide nasîn?**

Ez sala 1967'an li bajarê Diyarbekir hatime dunyayê, ez 5 salî bûm ku babê min hate girtin û em koçberî Estenbolê bûn. Min xwendina xwe ya despêkî li Estenbolê dest pê kir û heta temenê 16 saliyê ez li Estenbolê bûm, piştre ez zewicîm û vegeriyam Diyarbekirê û min li wê derê dest bi karê rojnamevaniyê kir, ew çax ez rojnamevana Ajansa ''Royterz'' li Diyarbekirê bûm hetanî sala 1991'an. Sala 1991'an hevjiyê min wexera dawiyê kir û ez koçberî welatê Almaniya bûm. Li wê derê min dest bi xwendina di warê sînemayê kir û piştre ez vegeriyam Estenbolê û li Estenbolê hetanî 5 salan jî min li Televîzyonê de kar kir û dîsan vegeriyam Diyarbekrê û niha jî ez li Diyarbekirê dimînim.

**Tu çawa têkilî cîhana Sînemayê bûyî?**

Mirov ji bo ku xwe bide nasandin, gerek e emrazê wê jî hebe û ji bo ku em xwe wekî Kurd bidin nasîn, divêt ku sened û arşîva



me jî hebe. Dîroka Kurdistanê gelek dewlemend e, lê arşîva wê tu ne ye, ev kêmasiyekî gelek mezin e. Wê çendê ez haydam ku bi qasê şehrezatiya xwe arşîva Kurdistanê kom bikim û vê dîrokê vejînim. Şahrezatiya min di warê Fîlma Dukomênt de ye û Fîlmên min tev li ser dîroka Kurdistanê ne.

**Tu ji derhênerên kurd li kurdistana Îranê kê nas dikî?**

Ez li Kurdistana Îranê gelek kesan nas dikim, lê mirov nabe navê derhêneriyê bide her kesekê. Derhêner divê wekî Behmen Qubadî be. Her kes gereke fîlma xwe wekî Behmen Qubadi saz bike. Bi rastî ew di karê xwe de gelek pirofîşêner e û ez bawerim ew dê di karê xwe de hêj pêtir serkevtinan destve bîne. Ew yek şanazî ye ji bo her Kurdekê.

**Tu dikarî hinek li ser berhemên xwe biaxivî?**

Min heta niha 6 Fîlm derxistine û tev dukomentin. Fîlma min ya yekem li ser dîroka Zerdeşt e û demijmêr û nîvek e. Fîlma min ya din **Bajar bi bajar**, ew jî li ser dîroka Kurdistanê ye, ew him dukoment û him jî arşîv e. Fîlmên din jî tev li ser dîroka Kurdistanê ne.

**Birêz Koçer dibêjin huner zimanê aştiyê ye, tu li ser vê çendê çi dibêjî?**

Rast e**, Huner zimanê aştiyê ye, lê ger di nav hunerê de siyaset hebe, huner dimire û dibe alavê destê siyasetê**. Huner divêt xwe serbixwe be. Her Hunermendek divêt huner û siyasetê baş fêm bike û wan ji hev cuda bike.

**Hunermend Burhan Berken:**

# Li Turkiyê tiştek bi navê muzîka Turkî tune ye

**Birêz Burhan Berken ji kerema xwe tu bi xwendevanên me xwe bide nasîn?**

Ez li sala 1970'an li bajarê Diyarbakir hatim dinê. Piştre ez tevî malbata xwe çûm bo bajarê Estenbolê u hetanî niha jî ez li wê derê dimînim.

**Birêz Burhan tu dikarî hinek li ser jiyana xwe a hunerî bo me biaxivî ?**

15 salan berî niha ez daqedar bûm bi karê Muzîkê û li bajarê Bursayê ez tevlî girupên muzîkê yên Turkî bûm û ta ku 4 salan ez li ser muzîka Turkî xebitîm û piştre vegeriyam bo ser muzîka Kurdî ku hetanî niha jî karê min di vî warî de berdewam e.

**Palnerê te di vî karî de kê bû ?**

Dema ku min xwast tevlî girûpên



muzîkê bibim, wan pêşde deng û karê min erê dikir û ji ber ku karê min di muzîkê de baş û dengê min jî heya qasekê xweş bû, gelek girûpan destê hevkariyê dane min û bi vî rengî ez çûme nava muzîkê. Ew girûpên ku hevkariya min kirin, Girûpên Let Depêyn, Bîlûs, Cîmî Morîs û Rolîkson bûn.

**Ciwanên me li Kurdistana Turkiyê pêtir alîgirê muzîka Kurdî ne an Turkî?**

Ez pêş de vê çendê bêjim ku li Turkiyê tiştek bi navê muzîka Turkî tune ye. Çima em bibêjin tune ye? Ji ber ku bingeha muzîka Turkî tune ye, ji ber ku gelê Turk pêtir muzîka Rojavayê guhdarî dikin. Bala Muzîsyenên wan jî pêtir li ser muzîka Rojavayê ye û ciwanên me niha pêtir guhdariya muzîka Erebêsk dikin, lê Erebêsk li Turkiyê bi her du zimanên Turkî û Kurdî heye û dema muzîkê yek be, ew çend xuya ye ku mirov dê guhdariya Erebêska bi zimanê Kurdî bike.

# Kurd û hunera Şanoyê

**Beşa 2**

**Soran Rizayî, soranrezayi@yahoo.com**



Di para yekem ya vê gotarê de me ronahî xiste ser çawaniya hatine rojeva hunera Şanoyê. Me bas kir ku çawa komek diyarok, sinc û tîtalên civakî bûne hîmên hunera Şanoyê.

Di vê beşa gotarê de em bala we dikişînin ser çawaniya navnana vê hunerê û şirove kirina wê. Xwezayî ye ku her neteweyek yan komek ji mirovan ku bi hev re dijîn, ji bo her diyarok û kevneşopiyeke taybet bi xwe navekî şiyaw û jêhatî hildibijêrin. Lê mixabin gelê Kurd tevî vê çendê ku hîmdar û çêkerê vê hunerê hatiye nasîn, hêj nekariye hunera xwe bi Kurdî navdêr bike. Vê çendê jî du sedemên bingehîn hene: 1- Yûnaniyan xwe kûk û binetara vê hunerê ji Kurdan girtiye û bi hin guhartinan ev bi şêwazekî nûjen ya îroyîn derxistine û navek jê re danîne. 2- Kurdan ji ber tune bûna deshilateke xweser ya siyasî nema bikaribin guhartinên lezgîn û rojîn di civaka xwe de pêk bînin, ev jî ji ber vê çendê bû ku her gav êrîşên dujminan li pey wan de bûn ku vê çendê Kurd dixistine qonaxa berxwedaniyê û di rastî de jî berxwedan girîngtir bû.

Kurd heta destpêka sedsala 20'an **Şano** bi awayekî nûjen û Rojavayî nedîtibûn û bo cara yekem Mehviyê Helbestvan (Huner) di dawiya sedsala 19'an de wisa pesna Şanoyê dike!

Dunya **Tiyatro** ye, meweste tiya biro
kê mayewe ke nebûbê tiya tiro

Mehvî deqa navê biyanî bi kar dibe (Teatre), ku ev nave jî di çanda Kurdan û di zargotinên Kurdî de rengekî neqenc bi xwe ve digire û wateya rastîn ya vê diguhire. Di çanda Kurdî de Tiyatro bi wateya wan Jinên bedkar û cihên ku ev tê de dişuxilin, tê bikar anîn. (Bar, kilobên şevan û…).

Di destpêka sedsala 20'an û pê de zaraveyên din yên pêwendîdar bi hunera Şanoyê wekî: "Piyes", "Diram" û "Tiyatr" di rojname û belavokan de reng dan. Hin caran "Nimayîş" û "Temsîl" jî hatiye bikar anîn, lê ew ji zimanên Farsî û Erebî ve hatine nava zimanê Kurdî, gelek caran jî ji zargotina "Misreh"ê mifah hatiye wergirtin ku bingeha wê jî ji Erebî hatiye.

Bo cara yekemîn di nîviya sedsala 20'an de helbestvanê nûxwez yê Kurd Ebdula Goran peyva Şano li şûna **Nimayîş**, **Mesreh**, **Temsîl** û **Tiyatro** bikar aniye ku ev jî ji nijadekî Îtaliyayî ya bi navê "Şên No" hatiye wergirtin.

Lê bi desttêwerdan û guhartinan bi terzên xwe yê îroyîn derketiye û bi kincê Kurdî xemiliye. Herçiqas Şano peyvekî bi kûk Kurdî nine, lê di dema îro de şiyavtirîn û bêtirîn nav ji bo vê hunerê ye. Peyva "Scene", "Şênê" yan "Şên No" peyvekî Îtalî ye ku di Firansî û Îngilîzî de bûye, "Sen" û di Farsî de jî "Siên" tê bi kar anîn.

Bi her awayî niha peyva Şano bi rindî cihê xwe girtiye û paşgirên wekî **name**, **kar**, **gerî**, **nivîs**, **ger** û hwd … lê zêde dibin û peyvên wekî: **Şanoname, Şanokar, Şanogerî, Şanonivîs** û **Şanoger** çê dibin.

# *Kurmanciya rast li her deran rast e!*

**Têmûrê Xelîl**
**temur_xelil@hotmail.com**



Piraniya ronakbîrên Kurd ên derveyî Yekîtiya Sovyeta berê gelek caran bi rastnivîsandina me - Kurdên Sovyetistana berê- qayîl nabin û bona gotinên xwe mak bikin, rastnivîsandina "Hawar"ê wek bingeh qebûl dikin. Ez di vê pirsê da ne her dem bi wan ra me û timê ser wê baweriyê me, ku rastnivîsandina me ji rastnivîsandina wan ronakbîran rasttir e û gorî qanûnên zimanê me ye. Lê qayîlnebûn tiştek e, îsbatkirina rastiya Kurmanciya me tiştek din e.
Ji bo vê armancê min berê xwe da "Hawar"ê û ji "Hawar"ê jî ez tenê li ser miqalên Celadet Bedirxan (Herekol Azîzan) sekinîm, ji ber ku ew "mejûyê" wê kovara Kurdî ya delal e. Û ez hatime ser wê baweriyê, ku Kurmanciya me û "Hawar"ê hema bêje wekî hev e, lê Kurmanciya wan ronakbîran û "Hawar"ê hema bêje ne wekî hev e. Li jêr ez dê nimûnan bînim.

Di pirsa tewandinê da:
Kurdên Sovyeta berê di dema tewandina gotinan da forma gotinan diguherînin. Wek nimûne: "Ewî *dêrî* vekir", "Heso çûye ber *pêz*", "Gulîzer ji *bajêr* tê". Di vê pirsê da "Hawar" û Celadet Bedir xan wek me dinivîsin, lê ne wek gelek ronakbîrên Kurdên Ewropayê, ku zimanek ji xwe ra çêkirine, heta carna dayîkên wan jî ji wan fêm nakin.
Ji bo nimûne: Di hejmara 24'an, di miqala: "KURD Û KURDISTAN BI ÇAVÊ BIYANIYAN" da (rûpel 2, stûn 1, xet 18) hevokeke wa heye: "Mêr diçin ber *pêz*...". Li vira *pez* bûye *pêz*. Nimûnên wa di hejmarên mayîn da jî hene, xwesma di hejmara 55'an da: "Heb bi *pêz* ketibû", "...li nexweşiya *pêz* hûr bû", "Lawik anîn *bajêr*" (di rûpelê 4'an da), "Lê ji ber ku di *lêwik* da tu hêvî nema bû..." (rûpel 5), "Ji ber ku *bêv* di wî bajarî de..." (rûpel 2); di hejmara 44'an, di miqala "Tefsîra Quranê" da: "Herwekî wan ji rastiyê xwe dane paş, erna *Yezdên* giha wan...", di hejmara 56'an, di miqala "SIR JAMES YOUNG SIMPSON 1811 - 1870" da (rûpel 2, stûn 2, xeta 15'an) "...bijîşkine *welêt* lê ezimandin" û hwd.

Tewandina gotinan di navên nivîskarên miqalan yên di "Hawar"ê da çapbûyî da jî xuya dibe, wek: Cemîlê Tacdo, Hesenê Mistê, Smaînê Serhedî, Evdirehmanê Rojkî, Sibhiyê Diyarbekirî, Masûmê Hamîdî, Remoyê Qenco, Silêmanê Ferho, Xelîlê Gênco, Bişarê Segman, Hisên Emînê Perîxanî, Yehyayê Seyda, Qadirê Ferman. Ev curê nivîsara navan niha hema bêje tenê li bal Kurdên Sovyeta berê maye, wek: Erebê Şemo, Heciyê Cindî, Emînê Evdal, Şeroyê Biro, Eznîva Reşîd, Zadîna Şekir û hwd. Hela di ser da, me navên dengbêjên Ermenî jî dikire di nav qalibê Kurdî da, ku destûra me tunebû jî, lê me ew yek ji bo wê yekê dikir, ku guhên Kurdên me hînî curê Kurdiyê bin. Wek: Aramê Tîgran, Karapêtê Xaço, Davîtê Xilo û yên din. Lê navên wan ne bi navê bavê wan va dihate nivîsar, lê bi paşnavê ra tevayî dihate nivîsar, wek Aram Mêlîkyan, Karapêt Xaçatryan û hwd.
Gelo ji Kurdên derveyî Sovyeta berê çend kes bi vî awayî dinivîsin? Yê ku ez dizanim, tenê Hesenê Metê û Şahînê Bekirê Soreklî ne. Gelo we çima ji bîra kiriye, ku Ehmedê Xanî, Melayê Cizîrî, Dewrêşê Evdî, Evdalê Zeynikê, Bişarê Çeto, Rizayê Xêlit bi wî awayî (em jî wek wan) nivîsîne. Gelo ji Kurdên Kurdistanê, ku niha li Ewropayê dimînin û zordestiya Turka û Ereba li ser tune, çend kesan navê xwe guhartine û niha bi awayê Kurdî dinivîsin? Çend kesan navê xwe guhartine, kirine Kurdî? Hin kesan eger guhartibin jî, berê Mistefa Koroxlî bûye, guhartiye û kiriye Nûrettîn Yildiz. Heta Nûreddîn jî Nûrettîn dinivîsin. Lê me Mistefa dikir Misto, Hesen dikir Heso, Celîl dikir Celo û hwd.

Di pirseke din da jî, ku rastnivîsandinê va girêdaye, Kurdên Sovyeta berê û "Hawar" hemfikir in. Ew pirsa tewandina wan gotinan e, ku bi rengdêra va (vokal) kuta dibin. Ji bo nimûnê, gotina *kitêbxane*, di dema tewandinê da bal Kurdên Sovyeta berê dibe *kitêbxana*, lê ne ku *kitêbxaneya*. Navê Zerê, ku keça Ûsiv e, dibe *Zera* Ûsiv, lê ne ku *Zerêya* Ûsiv. "Hawar" jî di gelek ciya da wek me nivîsî ye. Wek nimûne, di hejmara 35'an, di miqala "KURDÊN ECEMISTANÊ Û HALÊ WAN", di têbîniyê, xeta 5'an da em dixwînin: "...di *çayxanekê* da me bêhna xwe dida". Di hejmara 56'an, rûpela 3'an, ji jêr va xeta 11'an da hatiye nivîsar: "...di dawiya emirê xwe de bi *nexweşîke* welê ket...", hejmara 55'an, rûpela 3'an, stûna 2'an, paragrafa 5'an, xeta 4'an da jî gotina *nexweşîk* (lê ne *nexweşiyek*) derbas dibe. Di hejmara 32'an, di miqala bi sernivîsara "KARDÛX Û WELATÊ KARDÛXAN", ji dawiyê xeta 5'an da em dixwînin: "Diviya bû di *Diclê* re derbas bibin". Di stûna rex wê da, paragrafa 9'an wa destpê dibe: "Lê ji ber ku yewnanan nikari bû di *Diclê* re derbas bibin...). Eynî gotin bi curê *Diclê*, lê ne ku *Dicleyê*, di têbiniya wê miqalê da jî derbas dibe.

Wek hevbûna Kurmanciya "Hawar"ê û ya Kurdên Sovyeta berê di bikaranîna gotina *yê ku* (*ya ku*, *yên ku*) da jî xuya dibe, ku Kurdên din hema bêje bi kar naînin û hela di ser da jî şaş

dibînin. Ji bo nimûnê, Kurdên Sovyeta berê vê gotinê wa bi kar tînin: "Silo, yê ku gunehkarî kiribû, li xwe mukur hat…", "Sîsê, ya ku di mektebê da baş dixwend, îsal kete Ûnîvêrsîteyê". Em "yê ku", "ya ku" û "yên ku" ji bo mirovan û ruhberan bi kar tînin, lê ji bo tiştan em "kîjan" bi kar tînin, wek nimûne: "Tivinga Heso, kîjan unda bûbû, hate dîtin" û hwd. Nimûneyên wa ji "Hawar"ê: "Smaîl Axayê Şikakî, yê ko bi navê Simko deng daye…", "Herçî mezinên Kurdan, yên ko av bi wan sar û germ dibû" (hejmar 35), "…zimanê ibranî, yê ko berî 30-40 salan zimanekî mirî bû…" (hejmar 40), "Ehmedê Xanî, vî şairê Kurdan ê mezin, yê ko daye pey her tiştê miletê xwe…" (hejmar 42), "Dr. Sîmpson, yê ko ji êşa xelkê re derman peyda kiri bû…" (hejmar 56) û hwd.

Di pirsa nivîsandina navên biyaniyan da jî Kurdên Sovyeta berê û "Hawar" ser rêkê ne. Di hejmarên 55 û 56'an da Herekol Azîzan di miqalên bi sernavên "Yên ko xizmetî însaniyetê kirine" da navên biyaniyan him wek hene nivîsîne, him jî bi Kurdî nivîsîne. "JAMES YOUNG SIMPSON" û bi Kurdî - "CÊMS YÛNG SÎMPSON"; û "LOUIS PASTEUR" û bi Kurdî - "LWÎS PASTOR". Di hejmara 56'an, rûpela 2'an da navê bajarê *Edinburg* bi curê Kurdî - *Êdînbûrg* hatiye nivîsar. Kurdên Elegezê, an jî Şirnaxê mecbûr nînin bi Îngilîsî bizanibin, da ku navê Kilînton wek Clînton binivîsin.

Bal Kurdên Sovyeta berê bi kêmanî du gotin hene, ku ji derveyî wan hema bêje tu kes bi kar naîne, lê di "Hawar"ê da ez rast pê hatim. Yek ji wan gotinan, gotina *wekî* ye, yek jî *pê* ye. Em vê gotinê - wekî - cîna wek *eger*, cîna jî dewsa *ku* bi kar tînin. Wek nimûne: "Wekî tu gotineke xwe dibêjî, dudê hevalê xwe jî bêje", "Wekî tu hatî, bi xwe ra bîne". Li van hevokan da *weki*ya me *eger* e. Û bi wê manê di "Hawar"ê da jî çend nimûne hene, wek: "Babê keçkê got: Axa wekî tu cihê Jêliyan hemî bidî min, ez keça xwe nadim te". (di hejmara 34'an, di miqala Herekol Azîzan ya bi sernivîsara: "JI EŞÎRÊN BOTAN: JÊLIYAN" da, rûpela 4'an, stûna 2an, paragrafa 5'an, xeta 1'ê). *Wekî*ya vê hevokê tê mana *eger*.

Di "Hawar"ê da hinek gotin jî hene, ku niha tenê Kurdên Sovyeta berê bi kar tînin. Ji bo nimûne, di hejmara 40'î, di rûpela 5'an, stûna 2'an, xeta 10'an da hevokeke wa heye: "Yehûda nanê tisî dixwar…". Gotina *tisî* di nav Kurdên Sovyeta berê da gelek belabûyî ye û tê mana nan bi tenê, bêy pêxwarin. Di Kurdiya me da nanê *sayî* jî heye. Dema mêrê Kurd ji kevaniya xwe ra dibêje "nan bîne", her kes fêm dike, ku gerekê her tiştê xwerinê bîne, ango ne tenê nan. Lê gava di dema nanxwerinê da nan bi tenê xilas dibe (lê xwerin maye, xilaz nebûye) û mêr dixweze ji xanima xwe ra bêje, ku tenê nan bîne, dibêjê: "nanê *sayî* bîne".

Niha em bêne ser gotina *pê*. Kurdên Sovyeta berê vê gotinê gelekî bi kar tînin. Ji bo nimûnê: "Ewê serê xwe pê laçikê girêda", "Xezal pê sergîna tendûr dada", "Memo mast pê nan dixwe" û hwd. Xuya ye "pê" ji "bi wê" çê bûye. "Hawar" jî gelek ciya vê gotinê bi vê fikrê bi kar aniye. Di hejmara 40î, miqala: "ZILAMEK Û ZIMANEK", di stûnên 2'an û 3'an da ev hevok hene: "…divêt cihiyan jî weke xelkê zimanek hebe û têk de pê baxêvin", "…me zimanekî delal heye û em pê daxêvin". Di hejmara 55'an, di miqala: **"**YÊN KO XIZMETA ÎNSANIYETÊ KIRINE LWÎS PASTOR (LOUIS PASTEUR)" da (stûn 2, xet 8) em dixûnin: "Ez dibêjim qey bihina min wê pê vebiya". Di hejmara 56'an da Herekol Azîzan di miqala xwe ya rûpela 2'an da çapbûyî da hevokeke wa bi kar aniye: "Min tukes nas ne dikir, ko sebira xwe pê bînim".
Vira ez dixwezim bala we bikişînime ser gotina *tukes* jî.
Her tişt nine, ku Kurdên Sovyeta berê bi "Hawar"ê ra qayîl in û gerek çevgirtî wek wê bikin. Em wê gotinê cihê dinivîsin, wek *tu kes*. Û tu kes nikare me ji wê rastiyê dagerîne. Di "Hawar"ê da gelek gotinên wisa hene (wek *tucar, nexweş*), ku bi hev va hatine nivîsar û fikreke tam cihê - *bazirgan* û *nexweş* - didin. Lê eger cihê bêne nivîsar (*tu kes* û *ne xweş*), fikra rast: *hîç kes* û *bê tam* didin. Di miqala Herekol Azîzan ya di hejmara 56'an de ya bi sernivîsara YÊN KO XIZMETA ÎNSANIYETÊ KIRINE CÊMS YÛNG SÎMPSON "SIR JAMES YOUNG SIMPSON 1811 - 1870" da hevokeke wa heye: "Ez piçûk, feqîr û hov gihaşti bûm Êdînbûrgê. Min tukes nas ne dikir ko sebira xwe pê bînim".
Di hejmara 24'an, di miqala: "KURD Û KURDISTAN BI ÇAVÊ BIYANIYAN" da, di têbiniya (not) 1'ê, di xeta pêşîn da em dixwînin: "Ji ber ku em Kurd tucar Xwedê ji bîr nakin…". Vira gotina *tucar* gerek cihê bê nivîsar, wek *tu car*. Eger wisa nebe, *bazirgan* tê fêmkirin.

Eynî gotin di helbesta "MIRINA GURÎ" da derbas dibe, ku bi wergera C. A. BEDIR-XAN di hejmara "Hawar"ê ya 31'ê da çap bûye:

"Û ji cewrikên xwe re bibêje,
Mebin nîzing, tucaran…
Avahiyên ko mirov tê de".

Di hejmara 55'an, rûpela 2'an, paragrafa 3'an da hevokeke wa heye: "Lê kur ne şerê însanan; lê şerê nexweşiyan dê bikira". Li vira gotina *nexweşiyan* gerek cihê bihata nivîsar - *ne xweşiyan*.

Sernivîsara helbesteke şairê Kurd ên Sovyeta berê Simoyê Şemo "Tu ne yarî, tu neyarî" nimûneke wisa xweş e, ku wek dibêjin, dikare di vê pirsê da "serê lodê bigire".
Kurdên Sovyeta berê bi wê yekê ra jî ne qayîl in, ku ji bo çi dema gotinek bi herfa "î" xilaz dibe û paşpirtika "ya" di ser da zêde dibe, "î" diguhêre û dibe "i". Wek nexweşî - nexweşiyên, arîkarî (çima ne al**î**karî?) - arîkariya û hwd

Nivîsara bi zimanê Kurdî, xwesma bi Kurmancî, di nav Kurdên Kurdistana Turkiyê û Kurdistana Sûriyê yên Kurmancîaxêf da bi piranî berî çend deh salan destpê bû û bi xurtî pêşda çû. Û ji bo wana bingeh gerek ne tenê "Hawar" û Celadet Bedirxan bûna, lê rojnama "Riya Teze" û edebiyeta Kurdên Sovyeta berê jî, ku berî "Hawar"ê hebûne û bi Kurmancî gelek berhemên hêja çap kirine. Min bi xwe ji herduyan jî - ji "Riya Teze" jî, ji "Hawar"ê jî - feyda dîtiye. Û bawer nakim, ku eger min xwe bida tenê alîkî, dê baştir bûya. Û gerek em wek hineka nefikirin, ku "20 hezar Kurdên Sovyeta berê ber 20 milyon Kurdên Kurdistana Turkîyê çine ku?". Rastî piraniyê va girêdayî nîne. Celadet Bedirxanên Kurdên Sovyetê jî hene û di hêla zimên da yê herî navdar ew profêsor Çerkez Bakayêv (Çerkezê Xudo) e, ku serokê beşê bû di Enstîtûya Zimên ya Akadêmiya Zanyarî ya Sovyetistana berê da. Wî bi Rûsî dersên zimên didan Ooktorên Rûs û miletên din, lê karê wî yê bingehîn di hêla zanyariyê da çareserkirina problêmên zimanê Kurdî bû. Û ewî ser zimanê Kurdî gelek pirtûk çap kirine, piraniya wan bi Rûsî ne. Lazim e, ku ew bi curê wergeran bigihîjine gelê me.
Eger em wisa bikin, ew dê ji zimanê me ra tenê karê bîne û zimanê me dikare hîn pêşda here. Wê demê her Kurdeke bira ji xwe pirs bike: gelo çima **HEWAR**a Kurdî bûye **HAWAR**?



agiri

Rojnameyeke siyasî û çandî ye, Partiya Demokrata Kurdistana Îranê diweşîne
Hejmara 15, Janviyeya 2005

Navnîşan:
AFK
B.P. 102- 75623 Paris
CEDEX 13 –FRANCE

http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/kurmanci.htm

Email:
rojnama_agiri@yahoo.com

agiri2003@hotmail.com

Fax: 0012703425105

### Bo Agirî binivîsînin

Eger bo Agirî dinivîsin, ji kerema xwe van xalên jêrîn berçav bigirin:
* Çi nivîsek bê nav û nîşan nayê weşandin. Nivîskar dikare navê dilxwaz bo nivîsa xwe hilbijêre, Di gel navê dilxwaz ji kerema xwe navê xwe yê rastî bo rojnamê bişînin.
* Eger nivîskar ji bo nivîsîn û berhev kirina mijara xwe ji çavkaniyan mifah wergirtibe, hewce ye îşare bi van jêderan biket.
* Ev nivîsên ku ji zimanên biyanî hatibin wergerandin, hewce ye teksta serekî ya wê jî, ji rojnamê re bihê şandin.
* Hindî bikarin wêne, xerîte û belgenamên hewce tevî nivîsan bo me bişînin.

### Desteya weşana Rojnameya Agirî mafê vê çendê heye ku:

Destêwerdana rênûsa nivîsan biket.

- Wan mijar û babetên ku naverokeke lawaz hebin, belav neket.

# Şewitîna dibistana gundê Sefîlanê: 13 zarok mirin

Di encama bûyereke nexweş di roja pêncşemî 24'ê Befranbara 1383 (13.01.2005)'an de li gundê Sefîlan a bajarê Lurdigan ser bi parêzgeha Çarmehal û Bextiyarî de 13 zarokan jiyana xwe ji dest dan û di nava agir de şewitîn. Ji wan 13 zarokên mirî, 7 kes keç û 6 kes jî xort bûne. Bûyera di encama agir girtina sobeya odeya xwandina zarokan de diqewime. Cendekê fêrkar (mamosta)'ê dibistanê 90% şewitiye û rewşa tendirustiya wî jî pir xirab e.



Qewmîna vê bûyerê dil û wijdana hemû hewelatiyeke Îranê û mirovahiyê hejand.

## Ednan Paçeçî: Me belge di dest de hene ku Îran dest di kar û barên hundir yê Îraqê de werdidet

Li gor nivîsîna Rojnameya Kuweytî ya "Elreyêlam", Ednan Paçeçî di dema sefera xwe ji bo Welatê Urdinê daye xuya kirin ku rayedar û karbidestên Îraqî belgeyên zelal û aşkira di dest de hene ku Îran dest di kar û barên hundir yên Îraqê de werdidet. Wî herwiha daye zanîn ku Îraq, rê bi tu welatekê nadet ku ji rêya bandor têkirin li ser hilbijartinên Îraqê, wan hilbijartina ji bo bidestxistina berjewendiyên xwe bikar bînin.

## Rejîm nahêle Mizgefta Sunniyan li bajarê Selmasê bihê ava kirin

Midehekê berî niha qirar bû ku Mizgeftek ji bo hevwelatiyên Sunî yên bajarê Selmasê bihête çêkirin, lê rejîma Komara Îslamî di vê derheqê de tu gavek ne avêtiye û her carê bi hêceteké xwe ji vê karî diparêze. Lewra xelkê bi xirkirina pere, bi xwe ji bo avadankirina Mizgefê dest bi kar bûn, lê dema ku Mizgeft ber bi xilasbûnê ve çû, rayedarên rejîmê dest bi ser Mizgeftê de girtin, hetanî niha nehêlane Mizgeft bi dawî bibe. Eva jî belgeyeke rohn û eşkere ye di siyaseta cudahîdanan olî ku rejîma Komara Îslamî dijî bîr û baweriyên ayînî yên gelê Kurdistanê peyrewî dike. Ev kiryara rejîmê bûye sedama nerazîbûna xelkê bajarê Selmasê û derdora wê.

# Giraniya jinekê 600 kîlo ye

**Agirî/ Rojnameya Avesta**

Tahiya Mihemed Ayad, Jineke Misrî ye. Ew diya 6 zarokan e û giraniya wê 600 kîlo ye.

Ji ber vê giraniyê, dilê wê lêxistiye û ew acil rakirine nexweşxaneyê, lê ji ber ku nikaribûne di derî de derxînin, ew di balkonê re derxistine.



**Ev wêneye ji nexweşxaneyê hatiye girtin**